

خەسووی مام جەلال
**17 کتێبی چاپکراوی هەیە**
16 ◀



ڕاهێنەرێکی نێودەوڵەتی:
**ڤایرۆسە وەرزشییەکان قەڵاچۆ بکەن**
8 ◀



نەوزاد هادی،
دەربارەی ترانزیتی نێودەوڵەتی:
**هەولێر لە دوبەی گونجاوترە**
12 ◀


# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA





**Deutschland 1,50 Euro** | Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Danmark 15,00 DKK **Hejmar / Nr. 31** | 9. Sibat / Februar 2010 | **www.rudaw.net**




### Li Parlamena Ewrûpa'yê Konferansa Kurd

# Aşitiya cîhanê ancax bi aştiya Kurdistan'ê mimkûn e

SEMRA POLAT

"6. Konferansa Navnetewî ya YE, Tirkîye û kurd" ku êdî wek rêzekonferansên salane li Buksel'ê tê lidarxistin, ji aliyê Komisyona Şaristaniyê ya Tirki- ye'yê û Koma Çepgirên Yekgirtî ya Parlamentoya Ewrûpa'yê (YE) ve hat organîzekirin.

Mijara konferansê ku bi sernava "Tirkiye û pirsgirêka kurd / Diyaloga Siyasî û Avakirina Aşitiyê" hatibû destnîşankirin, di rojên 3-4 Sibat'ê de li avahiya Parlamentoya Yekîtiya Evrûpa'yê hat lidarxistin.

Konferans di bin hîmaye ya Xelatgirê Nobelê û serpîskoposê Efrîqa ya Başûr Desmond Tutu, Xelatgira Nobelê û Parazvana Mafê Mirovan ya îranî Dr. Şîrîn Ebadî, Balyozê Niyetçakiyê yê, Serokê Konseya Pêşeroja Cîhanê Bianca Jagger, Nivîskarê emerîkî Prof. Noam Chomsky, Nivîskarê kurd Yaşar Kemal û siyasetmedara kurd Leyla Zana de hat lidarxistin.

Konferans ji aliyê Serokê Komîsyona Şaristaniyê ya Tirkiye'yê ya YE'yê, Profesora Zaningeha Bergen a Norveç'ê Kariane Westrheim ve hat birêvebirin.

Axaftinên vekirinê ji aliyê Leyla Zana û Serokê Koma Çepgirên Parlamena Ewrûpa'yê Lothar Bisky ve hat kirin.



(Wêne: Rûdaw)

Ji hamiyên konferansê Desmond Tutu û Noam Chomsky ji ber ku nikaribûn tevlî civînan bibin, peyamên xwe şandin. Herwiha Kevneserokê DTP'ê Ahmet Türk û Şaredarê Amed'ê Osman Baydemir jî peyamên xwe yên nivîskî şandin konferansê.

Di konferansê de wek aliyê kurd; ji bilî Leyla Zana, parlamenterên BDP'ê Emine Ayna û Sabahat Tuncer, Nûnerê KNK'ê Felat Sümerkan, Serokê Projeya Mafê Mirovan yê Kurd li London'ê Kerim Yıldız, Parêzerê Abdullah Öcalan, İbrahim Bilmez, Parêzer Mehmet Emin Ak-tar, ji aliyê tirk; Prof. Doğu Ergil, rojmanevan Ece Temelkuran, Hasan Cemal û Oral Çalışlar, ji aliyê Ewrûpa jî; Ji Çepgirên Ewrûpa Lothar Bisky, Seroka Grûba Keskan ya PE'yê Helene Flautre, ji çepên İskandinawya Jurgen Klüte, ji Grûba Sosyalîstên PE'yê Richard Howitt, jşi Grûba Yekitiya Liberalên Demokratên Ewrûpa Niccolò Rinaldi, ji Grûba Çepgirên Nordîk Soren Bo Sondergaard, ji Grûba Yekitiya Çepgiran Rui Tavares û Endamê Yasadanîna Îrlanda'yê Gerry Kelly tevlî bûn.

Rûniştinên civînê ji aliyê; Prof. Michael Günter, Jean Lambert, Jill Evans, Jon Rud, Hans Branscheidt, Ramani Muttettuwegama ve hat kirin.

Axaftinên civînê bi çar zimanan hat wergerandin. Gelek siyasetmedar û baldarên kurd, tirk û ewrûpî jî civînê şopandin. Civîn bi taybetî ji aliyê çapemeniya kurd û tirk ve ji nêz ve hat şopandin.

Di civînê de Leyla Zana li ber cava bû. Serokê Parlametoya Ewrûpa'yê Jerzy Buzek ve jî hat pêşvazîkirin. Serokê Parlamentoy'ê siyasetmedar kurd wek "qehramana mafê mirovan" binavkir. Gotina Desmond Tutu ya "aşitiya cîhanê ancax bi aştiya Kurdistan'ê mimkûn e" mora xwe li rûniştinên civînê da. ▶ 6

## Feleknas pirtûka YE'yê nivîsand



Feleknas Uca (Wêne: Rûdaw)

Kevneparlamentera Parlamena Ewrûpa'yê Feleknas Uca di derbarê Yekîtiya Ewrûpa de pirtûkek weşand. Pirtûka Uca ji aliyê Weşanxaneya Ronahî ve hat çapkirin. Pirtûka Parlamentera berê di derbarê naverok, peywir, fonksiyon û taybetmendiyên Parlamentoya Ewrûpa'yê de ye. Uca bi vê pirtûkê teşeya xebat û demokrasiya ewrûpî bi xwendevanên kurd dide nasîn. Pirtûk bi edîtoriya Mihemed Ronahî hatiye amadekirin.

## Borsa ya Hewlêr'ê vebû

Li peytexta Herema Kurdistan'ê Hewler'ê Borsaya Nirxên Menqûl hat vekirin. Borsa roja pêncşemê bi civîneke li Otela Shereton'ê hat vekirin. Serokê Borsayê Ahmed Ebdilrahman Bengîn got ku wan di destpêkê de bi 10 milyar dinarên Îraq'ê dest pê kirine û di nav şirîkên borsayê de bazirganên heremî û banke jî hene.

Xebata damezrandina borsayê ji du salan virve didomiya. Bengîn wiha got: ''Hikûmeta Kurdistan'ê ji bo piştgiriya piyasayê bike û baweriya xelkê bidestbîne bi sedî 20 şirîkatiya borsayê dike. Herwiha şîrket û bankeyên kurd jî ji 8 milyar dînaran zêdetir sermaye tevlî borsayê kirine. Emê hewlbidin ku sermeyedarên biyanî jî di pêşerojê de hîsseyan bistînin û bibin şirîkê borsaya me.'' Li gor agahiyan hîsseyên Hikûmeta Heremê di borsayê de ji sedî 20, yên hemwelatiyan jî sedî 13 û beşên din jî aydê şîrket û sektora taybet in.

## Oldarên Kurdistan'ê civiyan

Komîsyona Baweriyan ku di bin banê Kongreya Civaka Demokratîk (KCD) de hatibû damezrandin, 1. Komcivîna Bawe- riyên Mezopotamya'yê di 6 û 7'ê vê mehê li Mêrdîn'ê li dar xist. Tevî Hevserokê BDP'ê Selahattin Demirtaş û Şaredarê Amed'ê Osman Baydemir, bi dehan siyasetmedar, nûnerên saziyên sivîl û şexsiyetên olî yên elewî, êzîdî, suryanî, ermenî, sunî û xiristiyan beşdarî civînê bûn.

Hevseroka KCD'ê Yüksel Genç di komcivînê de axifî û bal kişan ser girîngiya diyaloga di navbera olan de û got: "Ev yek cewera ol, aştî, yekîtî, heskirin û ronahiyê ye. Divê hemû ol û çand bi rengê xwe bijîn. Em bawer dikin ku hemû ol di nava yekîtiyê de bi ser kevin. Divê cihû xiristiyanan, xiristiyan musulmanan û musulman jî êzîdiyan biparêzin û hev bi pêş bixin." Osman Baydemîr jî di axaftina xwe de banga toleranse kir û got ku windabûna her olekî windabûna dewlemendiya herêmê ye.




4 191631 701506 00007



9 771869 104000 06

Great Britain

### Şîrketên alman berê xwe didin Kurdistan'ê

# Piştî Air Berlin, Lufthansa jî difire Kurdistan'ê




*Di sala 2009'an de 27,9 milyon rêwî bi şîrketa "Air Berlin" firiyan.*

**Berlîn (Rûdaw) -** Şemiya borî katjimêr di 20.30'an de Boeing'eke tîpa 737-800 ji balafirgeha München'ê li başûrê Almanya'yê ber bi Kurdistan'ê ve firiya. Dora katjimêr 2.35'ê danê sibehê balafira bi 186 kursî li Hewlêr'ê danî. Şîrketa alman Air Berlin xwediya vê balefirê ye. Di destpêkê de Air Berlin, ku piştî Lufthansa duyemîn mezintirîn şirketa balafiran a Almanya ye, wê di mehê de tenê du caran balafirên xwe bişîne Kurdistan'ê: Carekê Hewlêr'ê, carekê Silêmanî'yê. Lê peyvdara Air Berlin Jasmin Born ji Rûdaw'ê re diyar kir ku armanca şirketa wê ew e ku ji havînê û pê ve geştên xwe ji bo Kurdistan'ê zêdetir bikin.

Bi destpêkirina geştên ji bo Kurdistan'ê Air Berlin dixwaze di asta yekemîn de ji çûn û hatina kurdên li Almanya'yê ji bo welatê xwe sudê bigirin. Li gorî agahiyên ku Rûdaw'ê bi dest xistin, bazirganekî kurd peymanek bi Air Berlin re imze kiriye, ku li gorî vê peymanê ew pirraniya kursiyan dikire, da ku wan bifiroşe. Jasmin Born nexwest navê vî bazirganî eşkere bike, "çimkî wî ji me xwestiye ku em navê wî ji kesî re nebêjin".

Çendîn geştên Air Berlin ji balafirgeha München'ê pêk tên, lê mirov dikare ji Berlîn, Düsseldorf û Hamburg'ê bi balafirên Air Berlin bifire München û li wir li balafira ber bi Kurdistan'ê ve siwar bibe. Erzantirîn bilêt bi 598 euro ye. Mirov di rêya malpera airberlin.com dikare bilêtên geştên ji bo û ji Kurdistan'ê bikire.

Şirketa Air Berlin ji Gulan'a 2006'ê ve di borsa ya Almanya de qeyd kirî ye. Wê di sala 2009'ê de li seranserî cîhanê 27,9 milyon rêwî bi balafirên xwe gerandin. Air Berlin reqîbê sereke yê Lufthansa ye, ku mezintirîn şirketa balafiran li Ewrûpa'yê ye. Lufthansa bi xwe jî bi nêt e ku ji havîna îsal û pê ve geştên ber bi Hewlêr û Bexda'yê dest pê bike. Boris Ogursky ji Lufthansa ji Rûdaw'ê re eşkere kir, ku plana şirketa wî ew e ku ji balafirgehên Frankfurt û München'ê balafirên Lufthansa'yê ber bi Îraq'ê ve bifirin. Lufthansa ta sala 1990'î rêwî dibirin Bexda'yê, lê ji hingî ve wê geştên xwe rawestandin. Boris Ogursky got ku piştî lêkolînên berfireh Lufthansa gihaye wê bawerîyê ku pêwîst e ku ew dîsa bikeve bazara Îraq'ê. Ew sedema vê yekê bi vî şêweyî şirove dike: "Bazara Îraq'ê her ku diçe, bêtir vedibe û daxwazên balafirên ji bo Îraq'ê zêdetir dibin. Bazirgan û dezgehên rojava berê xwe dane Îraq'ê, bi taybetî pêwîstiya bazirganên petrolê bi balafirine qenc hene."

Çendîn Lufthansa ta niha balafirên xwe neşandine Kurdistan'ê, lê ezmûna wê di vî warî de heye. Çimkî şirketa Austrian Airlines (AUA) ji sala 2006'ê ve balafirên xwe ji Viyena'ya paytexta Awusturya'yê ve dişîne Hewlêr'ê. Ji Îlon'a 2009'ê ve AUA bûye beşek ji Lufthansa. Peyvdarê Lufthansa Boris Ogursky eşkere kir ku Lufthansa sûdê ji ezmûna AUA digire, lê geştên ji Almanya'yê ji bo Îraq'ê pirsgirêkan ji AUA'yê re çênakin: "AUA difikire ku ji havînî û pê ve geştên xwe ji bo Kurdistan'ê zêdetir bike. Pêwîstiyeke mezin bi balafirên qenc û xizmeta qenc heye."

### Kurdistan'ê qanûn şidandin

# Mêr, jina dûyem li Bexda'yê mar dikin

REWA EBDULLA

**Hewlêr -** Şertên firejiniyê ku ji aliyê Parlamena Kurdistan'ê ve hatin pesendkirin, mêrên kurd neçar kir ku ji bo pêkanîna girêbesta hevseriyê ya jina dûyem berê xwe bidin dadgehên Îraq'ê.

Li gor îstatîstîka Dadgeha Rewşa Kesayetî ya Hewlêr'ê, sala 2009'an bi sedemê danîna mercan bo birîna mehra jina dûyem bi tenê 25 mêran karîbû razîbûna dadgehê bo mehrbirîna jina dûyem bidestve bînin, lê sala 2008'an 65 bûyerên jina dûyem li dadgehên Hewlêr'ê rû dane. Lê di şeş mehên dûyem ên sala 2009'an de li gor şeş mehên yekem ên sala 2009'an telaqdan li dadgehên Hewlêr'ê zêde bûye. Di şeş mehên yekem de bi tenê 545 bûyerên berdanê hatine tomarkirin, lê di şeş mehên dûyem de 775 bûyer hatine tomarkirin. Li gor hinek parêzeran mercên firejiniyê bandor li ser bilindbûna rêjeya telaqdanê dike.

Li ser pêşniyara Hikûmeta Herêma Kurdistan'ê, parlamenê hinek sererastkirin di yasaya rewşa kesayetî ya Îraq'ê de kirin û yek ji wan mercdarkirina anîna jina dûyem bû.

Parêzer Husameddîn Serdarî ku bêhtir kar li ser dozên rewşa kesayetî li dadgeha Hewlêr'ê dike, got: "Parlamena Kurdistan'ê piştî sererastkirina yasaya rewşa kesayetî, birîna mehrê jina dûyem di çarçoveyeke zêde berteng de asê kiriye û karîbû rêjeya anîna jina dûyem bi awayekî yasayî li dadgehên Herêma Kurdistan'ê berbi kêmbûnê ve bibe, lê belê nikarîbû pêşî li fen û fûtên yasayî yên xelkê jî bigre."

Serdarî bi rêya pisporiya karkirina xwe di van dozan de, pêşniyar dike ku Parlamena Kurdistan'ê sererastkirineke din di yasayê de bike ku: "Her mêrekî daniştvanê Herêma Kurdistan'ê ku bo birîna mehra jina dûyem here dadgehekê derveyê Herêma Kurdistan'ê, bê cezakirin."

Parêzer Govend Baban dibêje piştî mercdarkirina firejiniyê liKurdistan'ê rêjeya berdanê zêdetir bûye û domand: "Nehatiye behskirin ku her hemwelatiyê Herêma Kurdistan'ê ku li dadgeheke derveyê Kurdistan'ê jina dûyem mehr bike tê sezadan. Di warê yasayî de, em nikarin ti tiştî beramber mêrên wiha bikin."

Rêveberê "Nehiştina Tundûtûjiya Dijî Jinan" komîser Jîlemo Evdilqadir di vê derbarê de bo Rûdaw'ê ragihand: "Herçiqasî mijara birîna mehra jina dûyem bi dadgehê ve girêdayî ye jî, lê meh derbas nabe ku çend jinek bo tomarkirina gilînameyekê seredana rêveberiya me nakin. Lê eger girêbest li dadgeheke derveyî He- rêma Kurdistan'ê hatine girêdan yan jin bi xwe bi anîna jina dûyem razî bûbe û yan jî mêr sezaya darayî ya wernegirtina razîbûna jina yekem dabe dadgehê, hingî em nikarin ti tiştî ji van jinan re bikin."

Saziyên parastina mafên jinan zêdebûna rêjeya birîna mehra jina dûyem li dadgehên başûrê Îraq'ê wek xeterekê li ser jinan û girêdana nava malbatan bi nav dikin.

# Li Kurdistan'ê 100 hezar malbatên hejar hene

BARZAN MÎHEMED

**Hewlêr -** Rêjeya hejariyê li Kurdistan'ê zêde dibe û salane zêdeyî 100 hezar malbat ji aliyê hikûmetê ve tên piştevanîkirin. Herwiha rêxistin û saziyên xêrxwaz hevkariya jimareke zêde ya malbatên feqîr dikin.

Rêveberê Giştî yê Çavdêrî û Geşkirina Civakî Dr. Afir Hîto bo Rûdaw'ê ragihand ku salane pênc milyar dînar bi rêya rêveberiyên wan li ser malbatên hejar tên dabeşkirin: "Hejmara malbatên feqîr ên Kurdistan'ê ji 100 hezarî zêdetir in, û 45 hezar ji wan bi rêya bernameyê çavdêriya malbatan ve her meh 30 hezar dînaran werdigrin." Pirraniya van 45 hezar malbatan li parêzgeha Silêmanî'yê ne ku dike 20 hezar malbat, herwiha 15 hezar xêzan li Hewlêr'ê û 10 hezar li Dihok'ê ne."

Derbarê kêmbûna meaşê hejaran, Hîto wiha got: "Di destpêkê de ev meaş bi 200 dînarên swîsrî hatibû destnîşankirin û wê demê hejaran karîbû pêdawîstiyên xwe bi van pereyan misoger bikin, meaş jî bo malbateke yek kesî û deh kesî her bi tenê 30 hezar dînar in lê divê cudahî di vî warî de hebin. Me bernameyê zêdekirina meaşê hejaran daye Civata Wezîran da ku hejmara malbatan ji sedî 100 bê zêdekirin û mîkdara pereyan jî ji sedî 150 bê zêdekirin. Ev dema sê salan e avê ti malbateke hejar nehatiye zêdekirin bo wergirtina meaş û em li benda cîbicîkirina biryarê ne."

Derheqê bernameyê dawî yê Rêveberiya Giştî ya Çavdêrî û Geşkirina Civakî, Hîto wiha anî ziman: "Bernameya me ya dawî bernameya tora parastina civakî ye û komîsyonek li Wezareta Karûbarên Civakî hatiye pêkanîn bo dabeşkirina hevkariya jimareke zêde ya malbatên hejar li Kurdistan'ê, bi hevkariya hikûmetê."

Ji xeynî Rêveberiya Giştî ya Çavdêrî û Geşkirina Civakî hinek saziyên xêrxwaziyê yên din li Herêma Kurdistan'ê hene ku mehane xwarin û pêwîstiyên nav malê û yên tendirustiyê li ser malbatên feqîr dabeş dikin. Dezgeha Xêrxwazî ya Barzanî mehane hevkariya zêdeyî 1300 malbatên hejar dike û sala borî grûbeke pizîşkî ji Tirkiye anî Kurdistan'ê bo tedawîkirina 42 zarokên feqîr ku bi nexweşiyên kêm naskirî ketibûn.



*Li Herêma Kurdistan'ê çendîn saziyên xêrxwaziyê hene ku bi awayên cuda alîkariya hemwelatiyan dikin.*

Cîgirê Serokê Dezgeha Xêrxwazî ya Barzanî Mûsa Ehmed wiha got: "Mehane em xwarin û pêdawîstiyên nav malê li ser zêdeyî 1500 malbatan li navçeyên cuda yên Kurdistan'ê dabeş dikin. Em pêwîstiyên tendirustî jî li ser gelek nexweşxaneyan dabeş dikin, pereyên van karan nêzîka 57 milyon e."

Dahata Dezgeha Xêrxwazî ya Barzanî berevajî Rêveberiya Çavdêriya Civakî ye û ti pereyan ji Hikûmeta Herêma Kurdistan'ê û Îraq'ê wernagire, dahata xwe ji aliyê şîrketan ve û Serokê Herêmê wek kesekî taybet û hinek kesên dewlemend dabîn dike.

Dezgeha navborî di warê sîstema karkirinê de dişibe hinek rêxistinên biyanî ku ji dêlva pereyan, aşya û xwarinê li ser hevwelatiyan xizan dabeş dike.

# Kerkûk, kurdan digihîne hev



*Çend salan piştî rûxana rejîma Saddam, hîn jî rewşa Kerkûk'ê aram nebûye.* (Wêne: Rûdaw)

NEWZAD MEHMUD

**Silêmanî -** Bi baweriya aliyên siyasî pirsgirêka Kerkûk û navçeyên cihê nakokiyê sedema wê yekê ye ku hemû lîsteyên kurdî yên hevrik jî bo gotûbêjên yekîtiyê li Bexda'yê kom bike. Cîgira berpirsê Komîteya Cîbicîkirina xala 140'ê jî dibêje ku pirsgirêka Kerkûk'ê neçar dike ku helwestek siyasî û neteweyî ya yekgirtî ya hemû hêzên kurdî li Bexda'yê hebe.

Serokê Tevgera Goran, Noşîrwan Mistefa bo rojnameya Şerq-ul Ewsat got: "Em ji aliyê xwe ve pêdagiriyê li ser yekîtiya hêzên kurdî di derbarê binemaya xalên hevbeş ên bernameyê siyasî û pirsên çarenûsî de dikin." Sekreterê Hizba Sosyalîst a Demokrat a Kurdistan'ê jî dibêje: "Kurd dixwazin Amerîka ji wan re ereban ji Kerkûk'ê derxîne û Amerîka jî vê yekê nake."

Kerkûk di ajandaya hêzên siyasî yên kurdî de hêjî meseleyekê bi hêviyan ve pêçayî ye. Piştî hilweşîna Saddam, sê hikûmet li Bexda'yê guherîn û hêjî pirsgirêka Kerkûk'ê nehatiye çareserkirin û bêyî çareserkirinê Kerkûk dike bibe wek "Kevirê Sêzîf" li ser milê siyasetvanên kurd.

Endamê Polîtburo ya YNK'ê Sadî Ehmed Pîre wiha dibêje: "Ger em nikaribin vê hevpeymaniyê ava bikin, çareserkirina pirsgirêka Kerkûk'ê zehmettir dibe, ji ber pêşeroja Îraq'ê bi vê pirsgirêkê ve girêdayî ye." Lê bi baweriya Pîre, wê Kerkûk di dawiyê de kurdan hemûyan bîne cem hev.

Bi dîtina Cîgira Serokê Komîteya Xala 140'ê ya Qanûna Îraq'ê, Nermîn Osman, dîtina hikûmeta dahatû bo Kerkûk'ê bi hêzên ku pirraniya parlamenê bidestve tînin ve girêdayî ye. Li gor Nermîn Kerkûk dikare hemû hêz û lîsteyên kurdî li Bexda'yê bîne ba hev.

Endamê Polîtburoya Yekgirtû ya Îslamî Selaheddîn Babekir jî got ku hê zû ye axaftin bê ser ka gelo Kerkûk hemû hêzên kurdî li Bexda'yê di hundirê hevpeymaniyekê de tîne ba hev ya na: "Dibe ku zêdeyî hevpeymaniyeke kurdan li Bexda'yê hebe lê di van meseleyan de nêzîkî hev bibin."

Serkirdeyê Tevgera Goran Mistefa Seyd Qadir jî got: "Tevgera Goran di meseleyên niştîmanî û neteweyî de di rêza pêşîn de ye."

# "Dixwazin ronakbîrên kurd fêrî madeyên bêhişker bikin"

KAWE ŞÊX EBDULLA

**Silêmanî -** Berpirsên asayişa Silêmanî'yê hişyariyê didin ku hewldan tên kirin rewşenbîr û xwendekarên zanîngehên Kurdistan'ê fêrî madeyên bêhişker bibin. Rewşenbîrên bajarê Silêmanî'yê jî dibêjin divê haya hikûmetê ji jiyana ciwanan hebe.

Li gor daxuyaniyên berpirsê Beşê Nehîştina Madeyên Bêhişker li Rêveberiya Asayişên Silêmanî'yê, Komîser Celal Emîn Beg ku tevlî bernameya "Germawgerm" ya kanala Gelî Kurdistan bû, planek heye ku beşekî mezin ê gelê kurd bibe dîlê destê madeyên bêhişker: "Rêya serekî bo pêkanîna vê plane jî fêrkirina xwendekarên zanîngeh, ronakbîr û nivîskaran in, lê hê bi serneketine."

Navborî wiha bo Rûdaw'ê axifî: "Dijminên me dixwazin bi rêya dîlkirina çîna herî hestyar ya civaka me, nifşekî bê hiş bîne holê. Armanca wan a serekî xwendekarên zanîngeh û enstîtûyan, rewşenbîr û nivîskar in. Bazirganên madeyên bêhişker ên kurd, faris û ereb van hewldanan cîbicîh dikin."

Hate eşkerekirin ku parêzgeha Silêmanî'yê li gor herdu parêzgehên din ên Herêma Kurdistan'ê, ji ber dirêjiya sînorên wê li gel Komara Îslamî ya Îran'ê, rêjeya herî zêde ya madeyên bêhişker li xwe digre. Ji xeynî bi dehan rêyên qaçax, sê deriyên fermî yên veguherandina bazirganî û çûnhatinê di navbera Îran û Herêma Kurdistan'ê de hene. Li gor Komîser Celal Emîn Beg: "Destê bazirganên hişber bi hêsanî digihe welatê me."

Helbestvanê naskirî Şêrko Bêkes tekez dike ku hewldaneke tirsnak tê kirin: "Bo destpêkirina şerekî bêdeng li dijî gelê me bi rêya tilyakê." Bêkes di dirêjiya daxuyaniyên xwe bo Rûdaw'ê wiha got: "Heta niha bi awayekî rasterast min tiştekî wiha nebihîstiye ku hewldan tên kirin ku rewşenbîr fêrî madeyên hişber bên kirin, lê bêguman tiştên wiha diqewimin." Bêkes hikûmet hişyar kir ku berî avêtina ti gavan bo pêşîlêgirtina van hewldanan divê: "Astê jiyana xelkê, nemaze ya ciwanan baştir bike, ji ber ger ciwan û rewşenbîr fêr bûn, êdî fêrbûna kesên din sanahî ye. Divê em sînorên xwe ji aliyê Rojhilatê Kurdistan'ê ve asêtir bikin."

Pirraniya van madeyên ku ji Îran'ê tên tilyak, heşîş, heroin, krak û şîşe ne. Komîser Emîn Beg bo Rûdaw'ê got ku niha zêdeyî kîloyek tilyak û heşîş amade ne bo şewitandinê û di çend rojên li pêş de bi biryara dozger wê bên tunekirin.

Sala 2009'an hişberê herî xeternak "krak" bo Silêmanî'yê hatiye şandin. 350 kes jî di sînorên parêzgehê de bi tohmeta kişandina tilyak û heşîşê hatine girtin.

Nivîskar û rewşenbîrê danîştvanê Silêmanî'yê Şêrzad Hesen dibêje ku fêrbûna hişber û alkolê karekî kevin e, lê got haya wî ji bêhişkirina nivîskar û rewşenbîran tune: "Heta destpêka salên 2000'î hinek rewşenbîrên hevalên min fêrî hişber bûbûn. Lê nizanim ji kijan deverê ji wan re dihatin."

BAYRAM AYAZ

## Serdana Serok Barzanî ya Amerika û hilbijartinên Îraq'ê



Di jiyana civakan de peywendiyên derve, yanî dîplomasî, cihekî girîng digre. Ji bo ku gelek bikare mafên xwe bi dest bîne, bibe xwedî dewlet, pêdivî bi piştevaniya navnetewî heye. Divê dewletên bihêz û Netewên Yekgirtî (NY) alîkar bin.

Îro li gor hiqûqa navnatewî 193 dewletên serbixwe hene; 192 dewlet endamên NY in. Dewleta herî dawî bûye endamê NY'yî, Montenegro ye (28.06.2006). Roja 27.09.2002 Timora Rojhilat bûye endamê NY'yî. Hinek welatan serxwebûn îlan kirine, lê NY wan wek dewlet qebûl nake. Wekî Abxazya, Karabax, Osetya Başûr, Kosovo, Trans-Istriya, Komara Tirk ya Qibris'ê, Sahara Rojava, Taiwan, Filistîn, Somalya… 65 dewletan serxwebûna Kosovo pejirandine, lê NY'yî biryar nedaye û wek dewletek nayê pesinandin. Filistîn jî wisa ye. 140 dewletan Filistîn wek dewletekî serbixwe qebûl kirine, lê heta îro biryareke NY'yî derneçûye.

Cihan piçûk bûye, herkes hewcedarê hevdu ye. NY'yî rêvebir e. Hiqûqa navnetewî û biryarên NY'yî nexşerêya dewletan e. Xelkên bê dewlet, ew jî mecbûr in vê hiqûqê bipejirînin. Em bi sîstema navnetewî razî bin an ne razî, lê hewce ye gelê kurd jî li gorî prensîb û biryarên vê pergalê tevbigere. Dezgehê ku biryarên dîrokî di derheqê doza Kurdistan'ê de bide NY'yî ne.

Hinek dewlet di siyaseta cîhanê de xwediyê giraniyê ne. Dewletên Yekbûyî yên Amerîka (DYA) serkêşê siyaseta cîhanê ye. Di siyaseta navnetewî de bê Amerîka'yê nabe. Pêwistî bi piştevaniya wan heye, ev rastiyeka vê serdemê ye.

Amerîka li Îraq'ê aktorê esasî ye. Siyaseta Îraq'ê bi rizamendiya Amerika'yê tê diyarkirin.

Pirsên girîng li ser masê ne. Gelo wê li Îraq'ê destûra 2005'an cîbecîh bibe? Yekitiya dewleta Îraq'ê dikare bê parastin? Xelkê kurd û ereb wê bikarin bi hevra bimînin? Erebên Şia û Sunne wê çi ji hevdu bikin? Siyaseta nêzîkbûna îdareya Kurdistan'ê û dewleta tirk wê bigihe çi qonaxî? Bandora Îran'ê wê kîjan encaman derxe holê? Welatên ereb wê xwe ji paradîgma erebbûn û erebîzekirina Îraq'ê xilas bikin? Ev pirs astengiyan derdixe pêş dahatûya dewleta Îraq'ê û demokrasiyê. Serokatiya Kurdistan'ê ji van dijwariyan aciz e, li çareseriyan digere. Parastina destkevtiyan pirseke hebûn û nebûnê ye. Pirraniya ereban li dû keysê ne ku desthilateka xurt hebin û bera kurdan bidin. Bazara li ser yasaya petrolê, pirsa statûya Kerkûk'ê û deverên din, cihê tirs û gumanan e!

Di vê dema esas de, di roja 7'ê Adar'ê bê de hilbijartinên Parlamena Îraq'ê çê dibin. Piştre hikûmeta nû, serokwezîr û serokkomar wê werin hilbijartin.

Encamên vê hilbijartinê wê çi be? Encamên hilbijartinên herêmî ne baş bûn. Malikî ji wan hilbijartinan serkeftî derket, dest bi leyistikan kir. Encamên hilbijartinên Mûsil'ê divê ji kurdan re bibe ders. Li Mûsil'ê Malikî hevkariyê bi Lista Hedba re dike. Hedba siyasî û heta fizîkî li tunekirina kurdan digere.

Eger encamên hilbijartina Adar'ê li Baxda'yê rewşeke wekî li Mûsil'ê derxe holê, wê ji bo tevgera Kurdistan'ê gelekî serêşî peyda bibe. Hikûmeta Baxda'yê ku îro bi vê qelsiya xwe dixwaze pêşî li girebestê petrolê yên îdara Kurdistan'ê bigre, wê sibehê çi neke!

Serok Barzanî di vê demê esas de çû Amerika'yê. Di warê dîplomasîyê de serdaneke zêde serkevftî bû. Peyman û axaftinan em nizanin, lê Barzanî di pileya "serdaneke dewletî" de hat vexwendin. Ev dilê mirov rehet dike. Pêdiviya kurdan û Amerika'yê bi hevdu heye.

Di axaftinan de amerîkiyan bal dikişand ser "yekitiya Îraq'ê". Serok Barzanî jî destûra 2005'an da ber wan û got: "Eger destûr cîbecîh bibe, mesele nîne, ev nebe em qebûl nakin". Wekî tê bîra min, Serok Barzanî carekê ragihandibû, ku kurd wê careka din bi rejîmên diktator re nejîn. Dadgeha Bilind a Îraq'ê bi biryara xwe ya du roj berê hê ji nuha ve rê li ber Baasî'yan vekir. Eger Baxda û ereb bi demokrasiyeke rasteqîn ne qayîl bin, wê gelo çi rê li ber kurdan bimîne, ji xeynî rêya li çarenûsa xwe gerînê!

Ka em binêrin bê 7'ê Adar'ê wê çi bi xwe re bîne? Kurdistan divê di hilbijartinê de bi serkevê!

Rûdaw

**Xwedî:** Rudaw Media GmbH · **Serokê Civata Birêvebir:** Nûredîn Weysî · nuradinwaisi@rudaw.net **Sernûser:** Ako Mihemed · akopress74@yahoo.com · **Rêvebirê Beşa Kurmancî:** Faysal Dağlı · faysaldagli@rudaw.de **Rêvebirê Beşa Soranî:** Hêmin Ebdulla · hemen@rudaw.nl · **Navnîşan:** Rudaw Media GmbH · Gutenbergstr. 63a · 50823Köln/ Almanya **Telefon:** +49 (0) 221.26 00 40 02 · **Telefax:** +49 (0) 221.26 00 49 81 **Web:** www.rudaw.net · **E-mail:** info@rudaw.de (Beşa Kurmancî) · **E-mail:** rudaw@rudaw.net (Beşa Soranî)


Serokê Koma Civakên Kurdistan'ê (KCK) Murat Karayılan di civîneke çapemeniyê de. (Wêne: Diha)

## KCK:
# Girtiyan berdin, Öcalan ji İmrali'yê derxin

**Behdînan (Rûdaw) -** Koma Civakên Kurdistan'ê (KCK) bi munasebeta şertê dirêjkirina biryara bêçalakiyê civînek lidarxist û daxwaza serbestberdana girtiyên kurd û derxistina Abdullah Öcalan ji İmrali'yê kir.

Serokê KCK'ê Murat Karayılan, daxuyaniya xwe ya têkildarî pêvajoyê ku raya giştî bi meraq li bendê bû, aşkere kir. Di deklerasyonê de israra ji bo çareseriya demokratîk hate nîşandan û ji bo çareseriyê gavên ku werin avêtin hatin rêzkirin. "Deklerasyona Aştî û Çareseriya Demokratîk" a KCK'ê ji aliyê Serokê Konseya Rêveber a KCK'ê Murat Karayılan ve bi beşdariya endamên Konseya Rêveber û Seroktiya Dîwanê ya KONGRA GEL bi civîneke çapemeniyê ji raya giştî re hate aşkerekirin.

KCK'ê di deklerasyona xwe de ragihand ku ji bo demokratîkbûna Tirkiye'yê, çareseriyeke mayînde ya pirsgirêka kurd û lihevkirineke civakî ya rast, pêwîstî bi esasgirtina sê xalên mîna kilîda çareseriyê heye. Ev xal wiha hatin rêzkirin: "Netewa Demokratîk a ku tê de nasname ne serdest bin û xwedî cudabûn in; Welatê Demokratîk ê ku tê de welatê tu civakên lê dijîn nayê înkarkirin; Komara Demokratîk a mafên siyasî û netewî yên civakan tê naskirin."

Koma Civakên Kurdistan'ê (KCK) ji bo rêvekirina li zemînê çareseriyeke aştiyane ya mayînde di deklerasyona xwe de gavên ku pêwîst in di destpêkê de werin avêtin bi çar xalan rêz kirin:

1- Ji bo pêşxistina pêvajoyê dualî bêdengkirina çekan ferz e. Bêdengkirina çekan ya aliyekî û mîna derfetê bêhtir xistina dewreyê ya çekan tu sûdê nade pêşketina pêvajoyê. Çiqas navê 'vebûna demokratîk' lê were kirin jî, heta dualî çek neyên bêdengkirin û bi rijîna xwînê re bi tu awayî nikare gav bên avêtin. Lewma divê dawî li operasyonên leşkerî û siyasî bê anîn.

2- Mijareke din a girîng jî ev e; hemû siyasetmedarên kurd ku ji 14'ê Nîsan'ê ve hatine girtin divê yekser serbest werin berdan.

3- Aktorê bingehîn ê di çareseriya demokratîk a pirsgirêka kurd e û di pêşxistina aştiyê de Rêberê Gelê Kurd e. Rêber Apo ji bo çareseriya pirsgirêka kurd a li ser bingehê wekheviya gelan derfetek e. Divê ev rastî li ber çavan were girtin û li ser bingeha ku karibe rola xwe ya çareseriya siyasî û demokratîk bilîze mîna gava destpêkê di statuya 'binçavkirina li malê' de were hiştin.

4- Bêyî ku bi kurdan re were guftûgokirin pirsgirêka kurd çareser nabe. Her civak xwedî hêza siyasî ya nûnertiyê ye. Ji bo çareseriya demokratîk pêwîst e di navbera aliyan de destpêkirina muzakereyan û pêşxistina pêvajoyê weke hedef bê destnîşankirin.

## Serokê Hak-Par'ê Bayram Bozyel:
# Em piştgiriya "vebûnê" dikin

**Viyana (Rûdaw) -** Serokê Hak-Par'ê Bayram Bozyel, pirsên hevkarê me Reşad Özkan yên li ser rewşa ya nû li Bakurê Kurdistan'ê û li ser siyaseta "vebûnê" ya ku hikumeta AKP'ê bersivand.

***Birêz Bozyel rewşa Tirkiye niha çawa ye, "vebûn" çawa berdewam dike?***

Wexta ku em sala nû, bi salên borî de miqayase bikin, em karin bi rehetî bibejin, rewş her diçe baş dibe. Ji xwe li ber Tirkiye'yê de rêyek tenê heye ew jî rêya çareserkirina mesela kurd e, çareserkirina mesela demokrasiyê ye. Tirkiye êdî nikare vî barê giran rake û herku diçe ji hêz dikeve. Heta ku Tirkiye mafên kurdan yên demokratîk û netewî nede û ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurdistan'ê razî nebe, peşiya we girtî be, aboriya we li paş bimîne, zulm û zordarî wê li ser



kurda û hezên demokratîk yên Tirkiye'yê ve berdewam bin. Alîkariya prossesa "vebûnê" gerek barê herkesî be û vazîfeyek însanî be.

***Di pêvajoya "vebûnê" de Hak-Par'ê kîjan rolê dilîze?***

Partiya me Hak-Par bo garantîkirina maf û heqên kurdan û pêvajoya demokratîkbûna Tirkiye'yê hatiye sazkirin. Em partiyek kurda ne û em bo mafên kurdan tekoşîne dikin. Ji bo vê yekê erka me ya mezintir ew e ku em piştgiriya gavên ji bo mafên kurdan û demokrasiyê tên awetin bikin, em wan li ser milên xwe hildin. Baweriya me ew e ku, siyaseta "vebûnê" jî bo wan tiştan ne.

Ji bo maf û heqê kurdan, ji bo azadiyê û demokrasiyê em hazir in bi her partî, tevger û hezên demokratik û peşveru re hevkarî bikin. Eger AKP jî di vî warî de gavan baveje gerek bo çareserekirina mafên gelan û bo tasfiye kirina mîlitarizmê alîkarî ji aliyê me bixwaze, em dîsa divejin em bo "vebûnê" amade ne.

## Zarokên girtî
# Bi zorê sirûd didin xwendin



**Amed (Rûdaw) -** Di demên dawîn de li bajarên Kurdistan û Tirkiye'yê bi sedan zarokên ku ji alî polîsan ve hatin girtin leqayê îşkenceyê tên. Di çend salên dawîn de di çarçoveya "yasaya têkoşîna li dijî terorê" li 3 hezar zarokên kurd hatin girtin û darezandin. Zarokên ku di li girtîgehan dimînin, rastî îşkence û heqaretan tên. Nûnerên saziyên civakî ji Rûdaw'ê re bahsa zilma li ser zarokên girtî kirin.

**Esad Aktaş (Koordînatorê Navenda Mafê Zarokan):** Di çarçoveya "yasaya têkoşîna li dijî terorê" li Kurdistan'ê 3 hezar zarokên ku hatine darezandin, yên hêj di bin çav de ne û ewên ku hêj cezayê wan ne hatiye diyarkirin û dadgeha wan didome hene. Nîqaşên ku derbarê dadgehên zarokan tên kirin heya niha ne li ser naveroka van dadgehan e, belkî zêdetir li ser şîvê wan e. Qereqol, girtîgeh, dadwer û dadgehên îro li Tirkiye'yê hene ji bona darezandina zarokan ne hatine rêkxistin. Beriya zarok bighijin qonaxa darezandinê gelek pêngavên din hene ku divê werin pêkanîn, zemîn jêre werê amadekirin. Weke mînak, bê kû diyar bibe Bêrîvan'a 15 salî kevir avêtiye polîsan an na, tenê di rûniştineke dadgehê de bi cezayê 7 salan hatiye hepiskirin. Kesên rêveber û kadroyên dadgehan ne ew kesin ku bersiva vê yekê bidin. Ji ber vê yekê:

-Dadwer, dozger û karmendên di vî warî de kar dikin divê ji aliyê kesên pispor ve werin perwedekirin.

-Kesên ku bi zarokan re didin û distînin, bi wan re peywendiyan girê didin, divê cîhana zarokan nas bikin, ji zarokan fam bikin û eger pêwist bibe bikaribin wan perwerde bikin.

-Divê dest ji hemû rengên tûndutûjîyê ku derûniya zarokan xerab dikin, weke îşkence, gefûgur û lêdan bê berdan.

**Hasan Akar (Nûnerê Komeleya Mafê Mirovan yê Edenê):** Edene devereke ku hertim mafê zarokan lê tê binpêkirin, nexasim zarokên ku ji aliyê polîsan ve tên binçavkirin. Ew bi rengekî berdewam ji hêla polîsan ve tên îşkence kirin. Vê heftê di Girtîgeha Ceyhan'ê de heft zarok di odeyekê de ji aliyê 30-40 polîsan bi ava sar hatine îşkencekirin. Tenê li Edene sala 2009'an de 3 hezar û 155 zarok hatine binçavkirin, ji vana 300 ketine girtîgehê. Zarokên ku tên girtin rasterast wan nabin Girtîgeha Pozantı. Destpêke wan dibin girtîgeha Kürkçüler û li wir tên îşkencekirin, paşê wan dibin Pozantı. Dema ew li girtîgeha Kürkçüler dimînin û heya derdikevin ew îşkence û danûstandinek ne mirovane dibînin.

**Yusuf Tanrisever (Serokê Yekîtiya Parêzerên Êlih'ê):** Niha li Êlih'ê di çarçova "têkoşîna li dijî terorê" zêdeyî 700 zarok tên darezandin û ev hejmar roj bi roj tê guhertin. Ew dadgeha ku ji bo darezandina zarokan werê damezrandin, ewê pirsgirêkê çareser neke û zemînekî baş jêre nehatiye amadekirin. Eve rastiyeke, lê ewê hinekî baştir be, wate ewê ji van dadgehên cezayê giran ku niha kar dikin baştir be.

-Divê ev dadgeh ji aliyê kadro an jî karmendên profesyonel ve werin meşandin.

-Divê projêyên ku giringiyê didin perwerde û derûniya zarokan werin peşxistin.

-Divê prensîpên gerdûnî yên mafê zarokan bingeh bigrin û di darezandinê de pêkhata civakî-abôrî li ber çav were girtin.

**Çend mînak ji zilma ku li ser zarokên girtî tê kirin:**
- Li deverên ku 6 textên razanê hene 13 kes radizên.
- Bi boriyên plastîk li destên wan didin.
- Giringiyê nadin pirsgirêken tendûristiyê û gûh nadin nexweşan.
- Zorê li zarokan dikin ji bona ku "axayê koxişê" hilbijêrin.
- Bi zorê sirûda netewî (İstiklal Marşı) bi wan didin xwendin.
- Wan ji xew radikin, bi lêdanê gefên kuştinê li wan dikin.
- Zora derûnî (psîkolojî) li ser wan dimeşînin.
- Dema zarokan dibin nexweşxaneyê an jî dibin lêpirsînê, sibê heya êvarî kelepçeyên di destên wan de venakin, ji ber vê yekê gozekên destên wan birîndar dibin.

## Amnesty bang li rejima Sûriye'yê kir:

# Girtiyên kurd berdin!


Enwer Naso


Marûf Mele Ehmed


Mihemed Ehmed Mistefa


Hesen Salih

**Rûdaw -** Piştî derbasbûna sê hefteyan li ser lidarxistina kongreya dawî ya Partiya Yekîtiya Kurd li Sûriye'yê ku daxwaza otonomiyê bo navçeyên kurd li Sûriye'yê dike, di 26'ê Kanûn'a 2009'an de çar endamên serkirdayetiya Partiya Yekîtî ji aliyê hêzên ewlekariya siyasî yên Sûriye hatin destgîrkirin. Hesen Salih, Mihemed Ehmed Mistefa, Marûf Mele Ehmed û hunermend Enwer Naso ji dema ku hatin girtin ji winda ne û guman heye ku ew rastî îşkence û reftarên xirab hatibin.

Li ser van bûyeran, berî çend rojan Rêxistina Lêborînê ya Navdewletî "Amnesty International" daxuyaniyek belav kir û tê de bi tundî hikûmeta Sûriye'yê rexne kir û jê daxwaz kir ku endamên Yekîtî yên girtî azad bike û bal kişand ser rewşa xirab a tendirustiya her çar girtiyan û xetera li ser jiyana wan di zindanên Sûriye'yê de ku ji bo hovîtiya xwe tên naskirin.

Amnesty International wiha dibêje: "Mihemed Ehmed Mistefa nexweş e û divê bi berdewamî dermanan bixwe. Hesen Salih dermanên aramker dixwe û sala 2006'an neştergeriyeke piştê derbas kiribû. Em bi guman in ku ev girtî karibin dermanan bidest bixin. Ev girtiyên ramanê ne, bi tenê ji ber ku raya xwe bi awayekî aştiyane derbarê pirsgirêkên kurdên Sûriye'yê de gotine, hatine desteserkirin."

Herwiha Amnesty ji Hikûmeta Sûriye'yê daxwaz dike ku di demeke kurt de her çar girtîyên kurd bên berdan. Li ser vê mijarê Rûdaw'ê peywendî li gel endamê Komîteya Siyasî ya Partiya Yekîtiya Kurd li Sûriye'yê, Ebdulbaqî Yûsiv re danî. Yûsiv behsa girtina hevalên xwe kir û daxwazkariya Amnesty wek tiştekî girîng wesif kir: "Em biryara Amnesty International a dawî di derheqê hevalên me yên ku di dawiya sala borî de, di 26.12. 2009'an de, hatin desteserkirin zêde baş û erênî dibînin û ku kesên ku tehde li wan tê kirin diparêze û dide xwuyakirin ku Hikûmeta Sûriye'yê rêz li mafên mirovan nagire û mirovan bê pirs û bi awayekî ne yasayî digre û dixe zindanan. Daxuyaniya Amnesty wek piştgiriyekê ye bo mafên mirovan li Sûriye'yê." Amnesty bi niyet e daxwaznameya xwe bi zimanên cuda bişîne bo Serokkomarê Sûriye'yê, Wezîrê Navxwe, Wezîrê Derve û nûnerên Hikûmeta Sûriye'yê li hemû welatên cîhanê.

Sekreterê Partiya Demokrata Kurd li Sûriye'yê Nesreddîn Brahîm jî behsa girtina endamên Yekîtî û daxwazkariya Amnesty kir û wiha bo Rûdaw'ê axifî: "Em girtina endamên partiya Yekîtî şermezar dikin. Ger ra û nerînên wan çi bin jî, lê bi baweriya me girtina kesên siyasetmedar û rewşenbîr ne çareserî ye. Em daxwaz ji desthilata Sûriye'yê dikin ku wan di demeke zû de azad bikin."

BESAM MISTEFA

## Li Qamişlo xelk nanê xwe ji çopê hildidin!



*Wê rojek bi ser bakur de bê, xelk wê heriya dîwaran ji birçîna bixwin!*
**S. Berekat!**

Ev dora nîv çerxekê ye ko li Sûriye'yê- welatê alim û zanayan berê- salên pûç û hişk bi ser tevahiya xelkên wê de dibarin, bi taybet li ser kurdên wê û navçeyên wan yên ji her tiştî bê par.

Ji roja ku Baasî'yan destên xwe bi rêya derbeyeke leşkerî danî ser desthilatê, Sûriye'ya geş û xweş ya berê cihê xwe da Sûriye'yeke yekreng di bin nîrê Baasî'yan de. Ha li vir, rêveçûna dîrokê sekinî û berepaş vegeriya.

Hemî xêr û bêrên welêt yên binerd û sererd yên pirr, di nav de wek dibêjin her sê zêrên reş – petrol, zer, genim, sipî û pembû – ku Xwedê kirine behra Sûriye'yê bûne para berîkên desthilatdaran û xelk ji wan bê par man.

Ji wê demê ve, roj û meh û salên hişk yek li dû yekê bi ser xelkê de bariyan û her sal xelkê digot "xweziya bi par!" û bi hatina Beşar re wek serokkomar rewş hîn xerabtir û aloztir bû, êdî xelk gihîştin xala herî xeternak û bi birçîbûnê re rû bi rû man.

Wek min got, vê rewşa ha bêtir bandora xwe li ser kurdên Sûriye'yê hişt û li navçeyên kurdan afata birçîbûnê rûda. Li wî bakurê têr û dewlemend, ku pirraniya budceya welêt jê tê komkirin, kurdên Xwedê li pariyê nanê xwe di nav çopên ku ji ber biyaniyan mane, digerin.

Zarokên kurdan ên bêguneh ku ken ji ser lêvên wan hatiye dizîn û birîn, sibehan zû radibin û kolan bi kolan li nav çopan li hinek nan û xwarinan digerin da ku zikên xwe pê tije bikin. Xortên di bengîniya temenên xwe de -lê çi temen!- ji ber bêkarî û zordariyê li kolanên "Qamişlo ya evînê" li nanê ku ji ber dewlemendan maye, digerin û zikê xwe pê haş dikin! Keç û qîzên keşxe ji bêçaretî çopan li hev dixin da hema çi nebe jî gezek nan bidest bixin...

Ev hemî nîşanên beriya qewimîna mezin in, xelk li kolanan li pariyê nan digerin di dema ku desthilatdar û dorhêlên wan di nav xweşî û hêsaniyê de dijîn. Û di dema ku partiyên kurdan nakokiyan geş dikin û kes nafikire ku saziyeke qenciyê û xêrxwaziyê di vê dema dijwar de ava bike da ku rûmeta kurdan di bin piyan de neçe, efsûs! Lê kîn roj bi roj di zikên birçî û bê xew de mezintir dibe û di dilan de komî ser hev dibe, li benda roja teqîna mezin ku kes nizane wê kengî bê. Lê her wê bê!

# Meleyên Îran'ê jî bazirganiya narkotîkê dikin

AZAD KURDÎ

**Urmiye -** Bazirganiya maddeyên bêhişker (narkotîk) li Îran û Rojhilatê Kurdistan'ê hemû sînorên coxrafî bezandine û li gor peydeçûna Rûdaw'ê, rayedarên rejimê hin meleyên Rojhilatê Kurdistan'ê jî di bazirganiya maddeyên hişber de bikartînin.

Ji ber zêdebûna rêjeyê bikarînerên maddeyên bêhişker li Îran'ê, çendîn kesan ev yekê wek derfet bikar anîne û bazirganiyê bi maddeyên hişber dikin, bi taybet mamosteyên olî, bi sûdwergirtin ji pêgeha xwe a civakî karê han dimeşînin, ji ber ku mele kêmtir cihê gumana xelkê û polîs in.

Li gor serjimêriya herî dawî ên Navenda Xebat li Dijî Maddeyên Bêhişker li Îran'ê, niha yek milyon û 200 hezar kes li Îran'ê tûşî maddeyên hişber in, ku ji sedî 45 a wan bikarîneran temenê wan di bin 30 saliyê de ye, lê statîstîkên ne fermî behsa vê çendê ku li wî welatî zêdeyî 4 milyon bikarînerên maddeyên bêhişker hene.

Jimareyeke zêde kurdên Rojhilatê Kurdistan'ê jî tûşî maddeyên bêhişker bûne, bi taybet li parêzgeha Urmiyê, hinek meleyên wê herêmê jî fêdeyê ji zêdebûna rêjeya tûşbûyan werdigirin û bazirganiyê bi maddeyên hişber dikin, ew meleyên ku wî karî dimeşînin, niha êdî di axaftinên xwe ên mizgeftan de derbarê bandorên xerab ên bikaranîna wan maddeyan tu gotinekê nakin."

Seîd M yê 45 salî ku xelkê Urmiyê ye, di vê derbarê de bo Rûdaw'ê wiha axifî: "Ev ne tiştekî nû ye, çendîn sal e ev mesele di holê de ye, beşek ji meleyên kurd jî bazirganiya maddeyên hişber dikin û bi vê rêyê ve zêde dewlemend bûne û serwet û darayiyeke zêde ji xwe re kom kirine. Ew meleyên ku wî karî dimeşînin, niha bi kêmî liser xerabbûna maddehên bêhişker diaxifin."

Mele M.E ku kesayetiyekî navdar yê olî li Urmiyê ye, red nekir ku hinek meleyên wî bajarî mijûlî bazirganîkirin bi maddeyên hişber in û bo Rûdaw'ê eşkere kir: "Li gor hemû qanûnek şerîeta Îslam'ê, maddeyên bihişker heram in, kesên wî karî dikin, xwedênenas in û ew karê wan gelek ziraran dighîne civakê û hezaran malbatan bi xwe re tune dike û bingeha wan hildiweşîne." Wî meleyê kurd bi hêrs diyar kir: "Ew kesên wiha çawa şermê li Xwedê û gel nakin, bi çi rûyekê pêşnimêjiyê dikin." Lê Mele Seîd Seferî ku Meleyê Mizgefta Nûr a Urmiyê ye, di daxwiyaniyekê de bo Rûdaw'ê, ev yek red kir mamosteyên olî wî karî encam bidin û wiha nerînên xwe anîn ziman: "Tu meleyek li Urmiyê û herêmên derdor wê karê nake û mijûlî meşandina kar û erkên xwe ên olî ne."


*"Belavkirina maddeyên bêhişker pîlan û siyaseteke sîstematîk a Komara Îslamî ya Îran'ê ye."*

Ezîz M ku çalakvanekî sivîl yê bajarê Urmiyê ye, wiha da zanîn: "Hinek Mele çendîn sal in bazirganiyê bi maddeyên hişber dikin, ez ecêbmayî dimînim ku wan diparêzin, ez bixwe meleyekê nas dikim ku heyamekê berî niha bi 2 kîlo maddeyên hişber hat binçavkirin, lê piştî çend rojan hat azadkirin!."

Partiyên siyasî yên Rojhilatê Kurdistan'ê jî bêdengiya Komara Îslamî ya Îran'ê li beramberî bazirganîkirin bi maddeyên bêhişker li Rojhilatê Kurdistan'ê wek komployeke wê dewletê dizanin bo tevlihevkirina bingeh û pêkhateya civakî a civaka Rojhilatê Kurdistan'ê. Endamê Komîteya Navendî ya PDKÎ Sidîq Derwîşî ji Rûdaw'ê ragehand: "Belavkirina maddeyên bêhişker pîlan û siyaseteke sîstematîk a Komara Îslamî ya Îran'ê ye ku li dijî neteweyên Îran'ê, bi taybet netewa kurd dimeşîne, diyar e ew komplo jî bo tunekirina ramana netewî û azadîxwazane di mejiyê ciwanên kurd de ye. Dibe hinek mele hebin wî karî bikin, lê ew meleyên ku bazirganiya maddeyên hişber dikin, ji bo armancên xwe ên şexsî wê karê encam didin û dixwazin bi vê rêyê dewlemend bin.

## Banga Konferansê:

# Dawî li şer bînin, yekta rê diyalog e!

**Bruksel –** Di 6. Konferansa Kurd ya ku li Parlamentoya Ewrupa´yê hat li darxistin de ji bo çareseriya pirsgirêkê banga diyalogê hat kirin. Di encamnameyê de hat xwestin ku divê dewleta tirk dawî li operasyonên leşkerî bîne û bi nûnerên kurd re tekeve diyalogê. Çend xalên girîng ku di daxuyanameya konferansê de cîh digrin wihane:

1- Konferans bang li dewleta tirk dike ku, dawî li operasyonên leşkerî yên li Kur- distan û İraq´ê bîne. Ew operasyonên leşkerî li ser hikûmata Herema Kurdistan'ê û ji bo aramiya heremê tehdîd dike.

2- Konferans ji bo rawestandina şerê çekdarî yê navbera PKK'ê û dewleta tirk de pêşniyaz dike kû nûnerên kurd û yên tirk tekevin diyalogê. Hikûmata Tirkiye'yê pêwîst e ku, ji bo navbera hemû gelên ku Komara Tirkiye'yê ayakirine de riya diyalogê garantî bike. Divê grûbên civakên demokratîk bên wêrandin û alîkariya damezrandina platformekî wi-ha bê kirin.

3- Divê Tirkiye, zagonên antî-terorê yên ku nûnerên gelê kurd yên legal krîmînalîze dike rake.

4- Konferansê teyîd kiriye ku hikûmeta tirk 'vebûneke kurd' kiriye, lê ev yek di demekî kin de bidawî hatiye, lewra hikûmet di derbarê têkilî danîna bi nûnerên hilbijartî yên kurd re û di şêwra civaka kurd û tirk de biserneketiye.

5- Divê kurd bi awayekî azad tevlî Newroz'ê bibin û ji bo ku hemû partiyên siyasî tevlî bibin û bi wêrekî xwe îfade bikin, derfet bê dayin.

### Desmond Tutu:

*Xwediyê xelata Aştiyê ya Nobelê yê ji Afrîka Başûr*



Divê hûkûmeta tirk bi nûnerên fermî yên civaka kurdî re were cem hev û hevdîtinan bide destpêkirin. Divê bi vê armancê hemû pevçûn bi dawî bibin, dewlet bê çek bibe û bibe dewleteke sîvîl. Ez armancên konferansê destek dikim û dixwazim ku ji pirsgirêka kurdî re çareseriyeke berdewam were dîtin. Tiştên em li Efrîkaya başûr pêktînin ji bo hemû pirsgirêkên cîhanê dixwazin. Civaka kurd di navbêra çemê ferad û dîjle de, civaka herî kevnar a Mezopotamya'yê ye, xelkê kurd bi sedsalaye çand û zimanên xwe di bin şert û mercên gelek zehmet de bikartînin. Em di vê konferansê de tên cem hev û em diyalogeke aştiyane, çareseriyeke siyasî dixwazin û divê ji gelemşeyan re çareseriyeke aştiyane were dîtin. Divê girtiyên siyasî serbest werin berdan, kesên li xeribiyê karibin vegerin welatê xwe. Dîrok dûbare dike. Gava partî ji bo armanceke hevbeş werin cem hev hingî dê encamê bide. Divê hûkumeta tirk bi nûnerên fermî yên civaka kurdî re were cem hev û hevdîtinan bide destpêkirin. Divê hemû pevçûn bi dawî bibin. Organên hûkumetê û meqamên dewletê divê bê çek bibin. Divê komîsyoneke rastiyan û komîsyoneke aştiyê were avakirin. Ez her wiha piştgirî didim pêşniyaza destpêkirina pêvajoyeke eftûyê. Ev pêvajo divê weke sazkirina pirekê were nîqaşkirin. Aştiya li cîhanê incex bi aştiya ji bo civaka kurdî re mûmkîn bibe. Li welatên lê gelemşe hene gava aştî çêbû, hingî xelk di nav aştiyê de dikarin bijîn. Cîhan li bendê ye ku mafê kurdan ên mirovî, li wan were vegerandin. Êdî dema aştiyê hat, dema rêzgirtina mirovan hat. Ketina Tirkiye'yê ya Yekitiya Ewrûpayê jî incex bi çareseriya pirsgirêka kurd mûmkîn be.

### Leyla Zana:



Heta mirov xwe nexe dewsa yê hemberî xwe, aştî çênabe. Aştî azweriya hevbeş a herkesî ye. Divê em pirsgirêkên heta niha me di serê xwe re derbas kiriye, ji dil û can û bi awayekî eşkere nîqaş bikin. Têgîhiştina aştiyê li Kurdistan û Rojava cûda ye. Divê li Batman'ê nasname were naskirin, li Qiliban'ê bi awayekî azad zimanê kurdî were bikaranîn, li Semsûr'ê kurd karibin dihatûya xwe bi awayekî azad nîqaş bikin, li Îdir'ê hemû cûdatî bi awayekî azad di nav hev de bijîn, li Wan'ê bi awayekî azad bi cîh û war bibin, li Dêrsim û Çewlik'ê bi rabirdûyê re rû bi rû hev bibe. Li hin cîhên Rojava (bajarên tirkan) teslîmiyet û jiholê-rakirin, li hin cîhan tirkbûn tê ferzkirin. Aştî li cem kurdan weke destkeftî tê dîtin lê belê ji bo hejmareke mezin kesên li rojava, weke windahîtî tê dîtin. Aştî, li rojava, windabûna desthilatdariyê, statû, hêza serdariyê û windahiya refleksa endametiya eslî ya damezrênere. Ji bo aştiyê divê balafirên leşkerî li ser asîmanên kurdan nefirin, di heman demê de panzêr di kolanan de negerin, ûnîformayên fermî neyê lixwekirin, şênkatî û nebat neyên jahrkirin, hêrsa zarokên keviran davêjin were tebitandin. Bila kesek li erdê neyê kaşkirin û xirikandin, organên kesî neyê jêkirin. Mesele ewe ku gava li Bodrûm'ê welatiyekî Tirkiye'yê diçe nan dikire li panzêran rast nayê, hingî divê li Kurdistan'ê jî welatiyê Tirkiye'yê rastî panzêran neyê. Mesela ewe ku rêz li daxwaza kurdan maf xwestinê were nîşandin. Pirsgirêk, ne tenê pirsgirêka famkirin û gotinê ye. Gava ji aliyekî ve aştî tê avakirin, divê nêrtina li pêvajoyê jî were zelalkirin. Lewma ne mûmkîn e mirov hêz bide pîlaneke ku naveroka wê ne diyare. Eger yek ji aliyan li dervehî pêvajoyê were hiştin, hingî wê çareserî têkeve tengasiyê. Divê dewlet, bi hemû qadên xwe yên gelemperî, bide hîskirin ku pêngava çareseriya kurdî di xwe de bi cîh kiriye. Civak nêzîkatiya dewletê ya li pirsgirêkê lêkolîn û lêpirsîn dike. Ti projeyeke ku PKK'ê tatmîn neke, ji aliyê piraniya kurdan ve neyê qebûlkirin. Divê alî, di gotin û pêkanînê de di nava nêzîkatiyeke hevbeş û yekpare de bin. Lihevhatin, diyaloga siyasî û aştî, bêyî hebûna aliyê din, ti carî bi ser nakeve. Wî çaxî, aliyê din dibe ku ji texmînên me zêdetir bi bandor be. Di dewsa bendewariyên payetî yên ji aştiyê, werin em aştiyê hêsan bikin. Qêrînên aştiyê yên kurdan wê rojekê bi teqezî xwediyê xwe bibîne.

### Emine Ayna:



Divê ji bo aştiyê operasyon werin sekinandin. Li Tirkiye'yê darbeyeke siyasî tê meşandin û navê vê yekê jî faşizme. Eger rêxistineke bi navê PKK, bi çekê têkoşîna azadiyê meşandibe, ev yek ne sedemê pirsgirêka kurdî ye lê belê encamê pirsgirêkê ye. Çalakiyên çekdarî yên ji wê rojê heta roja îro berdewam dikin jî, encamê vê siyaseta înkarê ye. Nêrîna dibêje, divê AKP pêvajoya çareseriyê destek bike, ne rast e. AKP heta roja îro, carekê tenê got, "çareseriya kurdî", du caran got, "pêngava demokratîk" û di encamê de di "Projeya Yekîtiya Mîllî" de biryar stend. Di mesela kurdî de, pirsgirêka bingehîn di mijara çaseriyê de nebûna îradeyeke siyasî bû. Eger tê xwestin girêdanka pirsgirêka kurd bi şîdetê re were qûtkirin, hingî divê dev ji siyaseta çareseriya pirsgirêka kurd bi şîdetê jî were berdan. Rêya vê yekê sekinandina operasyona ye. PKK 7 carî agirbest îlan kir û hêna jî di pozîsyona bê çalakîtiyê de ye. Pirsgirêka esasî ji bo rawestandina operasyonên leşkerî nebûna îradeyeke siyasî ye. Di darbeya 12 îlonê de ewqas zarok ne gîrtîbûn, ev darbeyeke siyasî ye, darebeyeke siyasî ye ku ji aliyê wezareta karê derve û ji aliyê polîs ve tê pêkanîn. DTP hate girtin, ev yek darbeyeke siyasî ye. Ev darbeya siyasî berdewam dike, ev yek faşîzme. Bi gotinên demokrasî û aştiyê, faşîzm tê meşandin. Ya xirap ewe ku di bin navê çareseriyê de darbe tê pêkanîn. Bi têgîhiştina me û bi sîstema me ya fikir dilîzin. Gelê kurd ji çareseriyê re amade ye. Tirkiye, ne welatekî xwedî neteweyekî tenê ye, pêwîstî bi navkirineke coxrafîk heye.

### Ece Temelkuran:

*Rojnamevan*



Ne alîyên kurd ne jî alîyên tirk Tirkiye'yê birêvenabe. Yek tişt vî welatî birêvedibe ew jî jî tirs e. Ji bo çareserkirina pirsgirêkê divê kurd û tirk ji nû ve hevûdû nas bikin. Pirsgirêkên ku sedan sal in nehatiye çareserkirin, wek pirsgirêka kurd û ermenîyan, AKP bîryar da ku di nava dû hefteyan de çareser bike. Hikûmet xwest ku ji vê dîwarê di demekî kin de du kevirekî bikşîne. Lê belê tirk tirsîyan. Tirk difikirin ku eger welat bê perçekirin ewê wendabibin. Ev tişt jî neteweperestîyek çekdarî derdixe holê. Heta neha kesê pêl tetîkê nekiribe jî, şerekî navxweyî didome. Li gel herdu alî jî hêrsekî pir mezin û nefretekî heye, herwiha tirs û şikestina xeyalan… Ez di wê baverîyê de me ku di nava mirovan de, di dilê wan de şerek destpêkirîye û didome.

### Jurgen Klüte:

*Parlementerê alman ê Koma Çep a Kesk a Bakûr / Çepê Yekgirtî yê Ewrûpa*



Dewlet di pêngava xwe ya demokratîk de, mûxatabê tenê yê meşrû girtiye. AKP wê hevdîtinê bi kê re çêke. Li welatekî ku xwe weke demokratîk bi nav dike, divê partî neyên girtin. Berê piştgirî dihat dayîn ku Kurdistan bibe weke welatekî cûda. Niha jî behsa dewleteke tenê, behsa Tirkiye'yê tê kirin. Gelê kurd dixwaze di bin banê dewleteke tenê de, ji bo yekîtî û hevbeşiyê bijîn. Divê komara Tirkiye'yê vê yekê cidî bigire. Her wiha eger dixwaze di rêya Yekîtiya Awropayê de pêş ve here, divê li gorî krîterên Kopenhagê tev bigere û pirsgirêka kême-neteweyan bi awayekî demokratîk çareser bike. Divê Tirkiye deriyê Yekîtiya Awropayê li rûyê xwe nede girtin.



## Nivîskar Hesen Silêvanî:

# Pirraniya nivîskaran naxwînin

"Bê guman piştevanî û harîkariya Hikûmeta Kurdistan'ê kirî bi rengekî xurtir pêdiviye. Lazim e kesên şehreza û xudan şiyan dezgehên rewşenbîrî û hunerî birêve bibin. Pêngavên berfereh ber bi cîhana wergêranê bavêjin, hevkariya saziyên rewşenbîrî û hunerî ji derve û ji nav de baş bibe..."

EVDILA KOÇER

Kurdên li seranserî dinyayê bi azadiya parçeyê Başûr ve gelekî kêfxweş bûn. Piştî salan, niha gelek kes mereq dikin ka li Başûr pêşketinên di derbarê çand û huner û rewşenbîrî di çi astê de ye. Rojnameya Rûdawê jî di derbarê van pirsan de xwe gihand serokê Yekîtiya Nivîskarên Kurd li Duhok'ê nivîskar û helbestvan Hesen Silêvanî û jê pirsî.

Nivîskar Hesen Silêvanî da zanîn ku azadiya Başûrê Kurdistan'ê karîgeriya xwe li ser werar û pêşveçûna rewşenbîrî û hunera kurdî bi rengekî aşkera heye, "Li jêr azadî û hikûmet û perlamanê Kurdistan'ê rê hatin vekirin. Bi hemî azadî ji bo nivîser û hunermendên kurd, ku karê xwe yê dahênanê encam bidin. Ev azadiya heyî wesan kir peywendiyên rewşenbîrî û hunerî li navbera her çar parçên Kurdistan'ê xurt bin.

**Divê nivîskar xwe ji tembelî û xemsariyê rizgar bikin**

Li ser dengvedana çanda kurdî ya li Başûr jî Silêvanî diyar dike ku ji her tiştî girîngtir ew e ku nivîskar û hunermend ji dil wefadarî meydana xwe bin û bi rijdî kar bikin, "Û xwe pêşve bibin. Ji orta tembelî û xemsariyê rizgar bin. Bê guman piştevanî û harîkariya Hikûmeta Kurdistan'ê kirî bi rengekî xurtir pêdiviye. Lazim e kesên şehreza û xudan şiyan dezgehên rewşenbîrî û hunerî birêve bibin. Pêngavên berfereh ber bi cîhana wergêranê bavêjin, hevkariya saziyên rewşenbîrî û hunerî ji derve û ji nav de baş bibe..."

Li ser pirsa me ya "Gelo li Başûr kêm-zêde salê çend pirtûkên kurdî çap dibin?", Hesen Silêvanî behs dike ku ew nikare tu jimarên pirtûkan destnîşan bike, "Lê", dibêje û berdewam dike, "Bizava çapê li Kurdistan'ê xurt e, gelek damûdezgehên çap û weşanê vî karî bi delalî encam didin, bo nimûne: Yekîtiya Nivîserên Kurd-Duhok ji temûza 2004´an hetanî niha kariye 274 pirtûkan çap bike. Ji bilî arîkariya diravî, ya pitir ji 300 pirtuken ditir bi rêjeyeke darayî ya qenc. Dezgehê Sipîrêz, Serdem, Aras, Kovara Metîn, Peyvîn, Enstîtûya Kelepora Kurdî û Wezareta Rewşenbîrî hemû berdewam in li ser xurtkirina bizava çapkirinê. Piraniya pirtûkan girêdayî wêjeya kurdî ne ji çîrok, helbest, roman, ziman, vekolîn, mê-jû, huner û hinekê zanistî..."

Dû re em jê dipirsin ka nivîskar di hêla berhemdayînê de çiqasî aktîv û çalak in, Silêvanî destnîşan dike ku mixabin ne li wê asta ku mirov dixwaze ye, "Piraniya wan xemsar in, naxwînin da binivîsin û gelek ji wan hizir dikin kes di ser wan re nîn e, mixabin di xewneke giran de ne û divê ku hişyar bibin, çunkî divê nivîkar her dem bixwîne. Bixwîne, da ku nêzîkî nivîsînê bibe. Nivîsîn gelek zehmet e, ne wesaye ku hinek hizir dikin ku bi sanahî ye, ez bi xwe ji nivîsînê ditirsim..."

**Yê behsa fikra azad neke ew bi xwe newêrek e**

Li ser pirsa me ya "Li Başûr heta çi radeyê meriv dikare behsa fikra azad bike?", Hesen Silêvanî dibêje ku her tişt bêminetî ye, "Bi hemî serbestî û azadî, her nivîskar, hunermend, mirov dikare behsa fikira azad bike... Yê neke ew bi xwe newêrek e û sansûrên tirsê li cem wî hene. Îro Kurdistan azad e, peyv azad e, hizir azad e, lê ez zimandirêjiyê na deynim di xana hizira azad de..."

"Polîtîkaya wezareta çandê li ser hunera kurdî çawa ye?" bi vê pirsa me re, Silêvanî jî bi pirsekê li me vedigerîne, "Xwezî te pirs ji wan kiriba, ka polîtîka xwe hene di binyat re?" û wiha dirêjî dide axaftina xwe, "Îro dema plandanîna rewsenbîrîyê ye, divêt wezaret baş xwe amade bike u kar bike, avakirina kesatiya mirovê kurd, giredayî rewşenbîriyê ye..."

Em vê carê jî dixwazin fêr bibin ka haya nivîskarên Başûr çiqasî ji wêjeya li Bakur heye, dibêje ku ta radeyeke qenc nivîskarên bakur û Başûr û bi taybet nivîskarên kurmanc yên li Duhok'ê haya wan ji hev heye, "Pirên rewşenbîrî û hatinûçûn û festîval her dû alî pişkdariyê têda dikin û ne xirab e, lê hîna pêdiviyeke xurtir pê heye. Ez bi serbilindî dibêjim Yekîtiya Nivîskarên Kurd li Duhok rolekî bê hempa di vê meydanê de heye û li ser berdewam e. Û encamen baş bi dest ve anîne ji bo wêjeya kurdî..."

Nivîskar Hesen Silêvanî li ser tecrûbe û serdanên xwe yên li Bakur jî, balê dikişîne ser ku pêşketina çîroka kurdî li bakur bala wî kişandiye, "Ji bilî ku ku helbestvanên jêhatî jî li wir hene û karê şano û şêwekarî jî ne xirabe li Bakur..."

# Ehmed diçe Berlinale




DILBIXWÎN DARA

**Bonn -** Mezintirîn festîvala fîlman li Almanya ku her sal bi navê Berlinale li bajarê Berlin'ê tê li darxistin, îsal di navbera 11-21.02.2010 tê lidarxistin.

Îsal di vê festîvalê de kurd zêde xuya nakin. Li gora ku programa Berlinale, ne Behman Qubadî heye, ne Hiner Salim ne jî Hisên Hesen. Her wiha ji Bakurê Kurdistan'ê jî vê carê kesek amade nabe.

Çîroka Lawê Babylon Îsal fîlma dramatîk ya bi navê "Lawê Babylon" bi navê Îraq'ê diçe Berlinale. Fîlm bi navê Kurdan beşdar nabe, lê belê bûyer li Kurdistan'ê çêbûne kesên ku rola sereke di fîlmê de dilîzin kurd in.

"Lawê Babylon" ji aliyê Şîrketa Piramida Medya ve hatiye çêkirin. Bûyerên fîlmê di dema şerê têkbirina Saddam Husên de, sala 2003 çêdibin. Fîlm bi xwe serpêhatiya zarokekî kurd e, bi navê Ehmed. Ew 12 salî ye. Ew sêwî ye, bavê xwe di şer de wenda kiriye, ligel dapîra xwe dijî. Dapîra Ehmed dibihîse ku, hinek dîlên şer li Başûrê Îraq'ê zindî hatine dîtin. Biryarê dide ku biçe li kurê xwe (Bavê Ehmed) bigere. Ew ji sala 1991 ji dema Şerê Kendav'ê de wenda bûye.

Rola Ehmed Şehzad Hisên dilîze. Dapîra Ehmed bi rêdikeve û ji Kurdistan'ê berê xwe dide Babylon (Babil). Ew bi rêve gelekî diwestin. Gelek astengî û zehmetiyan dibînin. Li gelek kesan rast tên û li bavê wendabûyî dipirsin. Bi rêve Ehmed mezin dibe û êdî bêhtir bi êşa wendakirina bavê xwe dihese.

Derhênerê Îraqî Mihemed El Deracî, bi xwe çîroka fîlmê nivîsandiye û derhêneriya wê kiriye.

Film di sala 2008'an de hatiye kişandin û sala 2009'an de jî qediya ye. Fîlm 90 xulekan dirêj dike û bi zimanê kurdî û erebî hatiye çêkirin. Tê çaverêkirin ku Ehmed kurd yê 12 salî, îsal bala sînemagerên cîhanê bikişîne ser xwe.

# "Kafka yên me jî pirr bin"

**Stenbol -** Çîroknûs, helbestvan û yek ji berhevkarên xebatên zargotina kurdî Çiya Mazî, roja 31.01.2010'ê, li Kurd-Kav'a ku li Stenbol'ê ye, bi gotûbêjeke kurdewar bîr û boçûnên xwe yên edebî derbirî.

Gotûbêja bi moderatoriya Salihê Kevirbirî û Kawa Nemir pêk hat. Kevirbirî û Nemir, beriya ku Çiya Mazî bi xwendevanên wî re bihêlin, hest, raman û boçûnên xwe yên li ser Çiya Mazî anîn ziman. Di serî de Serokê Kurd-Kav'ê Yaşar Kilercî, Endamê Meclîsa Hak-Par'ê Azîz Akçan, Sekreterê Weqfê Behcet Epozdemir, rêveberê weqfê Zekî Kutlan, Xwediyê Weşanxaneya Do' yê Huseyîn Gündüz, endamên şanoyên Seyr-î Mesel û Destar Şanoyê, Nûnerê Rojnameya Dema Nû yê Stenbol'ê Kamer Beysulen, Endam û Rêveberên Komeleya Çandê ya Çirayê, şagirtên ji zanîngehan jî tê de, li dora 50 kesî beşdarî li semînerê kir.

Salihê Kevirbirî, di axaftina xwe de diyar kir ku Çiya Mazî, yek ji hîmdarên kurdiya bakur ê serkeftî ye.

Herçî Helbestvan Kawa Nemir e, di axaftina xwe behsa rol û girîngiya kelepora kurdî kir û di vê babetê de hewldan û behremên Çiya Mazî bilind nirxand.



*Ji çepê: Kawa Nemir, Çiya Mazî, Salihê Kevirbirî* *(Wêne: Rûdaw)*

Çiya Mazî, piştî ku axaftineke dirêj li ser serdema salên 90'î û tesîra wan salan li ser derûnî û berhemên xwe kir, wiha berdewam kir: "Di vê dema pêşketî de, wê nîqaşên nivîskaran jî derkevin û wê ji bo mijarên çîrokên xwe, nîqaşên tund jî bikin. Êdî ev pêşketina çîroka kurd nîşan dike. Bawer bikin "Raskolnîkov"ên me pir in, bawer bikin koloniyên cezakiriyên wekî ya Kafka yên me jî pir bin, bawer bikin zilamên me yên bi manto jî pir in, wekî ya Oğuz Atay. Bawerî jî heye ku Dostoyevski, Kafka û Oğuz Atay ên kurdî jî wê pirr bin. Divê çîroknûs kêmasiyên civaka me, tirsên me, nakokiyên me yên qet nehatine gotin bibînin. Eyb û şermên me, xeletî û quretiyên me jî derkevin holê, bila vê bikin." Piştî gotûbêjê, Çiya Mazî li salona saziya çandî pirtûkê xwe îmze kirin.



"Ez tê gihiştim ku Feqî û Mela jî, heta Cegerxwîn jî, dikarin bi deqên xwe silavê li Shakespeare bikin. Wêjeya kurdî ji îro û pê de, di nava sî salên peş de, wê bikaribe bibe yek ji berhemdartirîn wêjeyên cîhanê."

# Emê xeyala Xanî bikin rastî!

DERYA KILIÇ

**Stenbol -** 400 sal piştî nivîsandinê Shakespeare soneyên xwe niha bi kurdî dibêje. Wergerê kurd Kawa Nemir, 154 soneyên nivîskarê mezin yê wêjeya cîhanê û ya îngîlîz Shakespeare, tevlî kîtabxaneya kurdî kir. Kawa Nemir ku pirsên me yên di derbarê mijarê de bersivand, bahsa kûrahiya zimanê îngîlîzî kir û di derbarê geşbûna dîrokî zimanê kurdî axifî. Nemir di wergera xwe de kurdî li hember zimanekî cîhanî ceribandiye. Kawa Nemir ku piştî xebat û serpêhatiyeke 16 salan berhemên Shakespeare wergerandiye zimanê kurdî, giringiya vê yekê ji me re vegot.

***Te klasikeke 400 salî wergerand kurdî. Çi berê te da xebateke wiha?***

Min kêfeke ku nayê gotin ji vê kirina xwe girt û di 400'emîn salvegera çapbûna Hemû Soneyên William Shakespeare de, bi boneya derçûna kurdiya wan, bi dilekî rihet dikarim bibêjim, ku vê xewnê ez tê vedame, çi biçûk çi mezin, kirina xebateke wiha.

***Tu dikarî ji me re bi kurtî behsa pêvajoya xebata 16 salan bikî?***

Piştî xwendinên ku Shakespeare tevî giyanê min kirin, min wergerandina çend soneyan ceriband, wisa wisa di ber re jî min ji nivîsandin û wergerandinê bêtir çavkaniyên xwe tev dan. Hê hingê min li ba xwe destnîşan kir, ku Xanî dikare bê hawara min. Lê ne bi qasî wî be jî, ez tê gihiştim ku Feqî û Mela jî, heta Cegerxwîn jî dikarin bi deqên xwe silavê li Shakespeare bikin. Ango tiştê sereke ew bû, wekî dema ku min ê zimanekî xweser durist bikira, ka min ê kî li pişta xwe bidîta.

***Baş e, te ji bo çi soneyên Shakespeare wekî xebata xwe ya wergerê ya pêşin hilbijart?***

A rast, wergera soneyên Shakespeare ne xebata min a wergerê ya pêşîn e, lê di wateya girîngbûna berhemekê de, xebata min a wergerê ya pêşîn e û ez dibêjim, ew "golden shota" min a pêşîn e.

***Gelo te di wergerandina zimanê wêjeyî yê îngilîzî de ti zehmetî kişandin?***

Hezkirina min a ji zimanê îngilîzî ji zarokatiya min û vir ve ye û wekî helbest, lîstikên şanoyê, kurteçîrok û roman, min heta niha wergera 80 berheman ji îngilîzî bo kurdî kiriye.

***Tu eleqeya li ser wergera soneyên Shakespeare çawa dibînî? Bi raya te, gelo wêjeya kurdî îro gihiştiye wê asta ku diviya lê bû ye? Bi te, çi qasî ji wê astê dûr e?***

Wergera hemû soneyên Shakespeare yek ji encamên nifşê Rewşen'ê yê salên 90'î yê Kurdistana Bakur e.

Eleqeyeke berra jî gelekî germ û ciyê dilgeşiyê heye li ser wergera Hemû Soneyên William Shakespeare. Ez dibêjim, ev şoreşeke biçûk e, lê ez ê bi vê jî neyêm ser! Ji zimanê me re hê gelek surprîzên min hene. Hinek berhem hene, çi werger çi jî bi kurdî hatine nivîsandin; ger ev biweşin, wê gelek şaştêgihiştin û qelpî ji dara derewan biweşin.

***Hejmara kesên ku bi wergera kurdî radibin gelekî hindik e. Gelo arîşe û serêşiyên giştî yên ku têne serê wergêran hene?***

Hejmara wergêrên kurd ên ku karê xwe bi duristî dikin hindik e. Lê wekî din, di gelek warên wergerê de birrek wergêrên dêbav kurd, lê zimankuj, hene. Wisa hene, wekî tu xweliyê bavêjî ser wan, nakeve erdê. Nexasim jî ev nêzîkî du sal e ji ber vebûna TRT'yeke ku ji gelek aşbetalên bazarê re wekî duşeş hat, keriyek 'wergêr'ên nezan. Pêşniyara min ew e ku em "Yekîtiya Wergêrên Kurd" damezirînin û em hem bibînin ka çi astengên burokrasiya Leviathanperestên Musulman derdikevin pêşiya me, em hem jî dest bi danîna rê û rêbazên wergera kurdî bikin.

***Ev xebata te ji her tiştî bêtir di kîjan xalê de ji bo te girîng e?***

Divê ez gelekî eşkere bibêjim, ku wergera Hemû Soneyên William Shakespeare bêtir di vê xalê de girîng e, ku min di nava 16 salan re hewil da ez xwîna kurdî, giyanê kurmancî bidimê. Ya duduyan; hêviya min ew e ku ev werger hêzê bide afirînerên kurdî û deng ji pilepila dijminên koka me bibilîne. Bila di vê yekê de wekî gavekê bê hesibandin. Ya sisiyan; bikaribe tixûbên kurdî, hêza derbirana bi kurdî nîşan bide. Ya çaran; girîng e bibe zimanê dilên dildaran. Ya pêncan jî; bila bibe delîlê ku evîna min çi qasî diyar û dirr e.

***Îro tu wêjeya kurdî di kîjan çarçoveyê de dibînî?***

Dubare bibêjim; wêjeya kurdî ji îro û pê de, di nava sî salên peş de, wê bikaribe bibe yek ji berhemdartirîn wêjeyên cîhanê. Îro ji wê çarçove û asta ku xewn û xeyala min û gelek heval û hogirên min e dûr e, lê heke bi dînamîkên wekî perwerdehiya bi kurdî, bidestxistin û parastina statûya neteweyî, xebata pîlansaziya Kurdistana serbixwe û yekbûyî ya dahatûyê were xwedîkirin û ji berhemên gerdûnî li pey hev, mîna lehiyê werger bêne kirin, bi raya min, em ê bikaribin di nava wê dema navborî re bigihîjin wê encama ku wê hebûna neteweya kurd a li ser rûyê cîhanê dakokî bike, wê xewn û xeyala Ehmedê Xanî bike rastî.



Kawa Nemir (Wêne: İsmail Yıldız)

MÜSLÜM YÜCEL

## Sûra Selîm Berekat



Sûriye ji berê ve ye di warê navenda nivîsa kurdî de bûye navendeke girîng. Weke ku ji du heftiyan û vir ve ye ez hewil didim binivîsînim, rêberê vê yekê Mihamed Kurd Elî ye (1876-1953). Girîng e mirov dûbare bike: Elî ji dayikeke çerkez hatiye dinê; cîhê jidayikbûna wî Şam e. Piştî dibistana seretayî dest bi rojnamevaniyê kiriye û her wiha Kovara El-Muktabas bi rêve biriye. Elî, xebateke wî ya bi navê 'Herêmên Sûriyê' ya ji şeş cîldan û bîranînên wî yên ji sê cîldan ên hatine weşandin hene. Her wiha wî gelek helbest û çîrok jî nivîsandine. Ji bilî Elî, di nav kurdên Sûriye'yê de kesekî din ê girîng ku bi Erebî dinivîsîne heye: Selîm Berekat (1951, Qamişlo). Berekat ji aliyê hin kesan ve weke "Yaşar Kemal'ê ereban" tê nasandin. Her wiha di qadên cûr be cûr ên wêjeyê de jî berhemên wî hene. Li Tirkiye'yê hin berhemên Berekat bi kurdî û tirkî hatine weşandin; du çîrokên wî yên bi navê Kûliya Hesin û Pûf li Sûrê ke yên ji nav weşanên Aram derketine hene û ji nav weşanên Avesta jî pirtûka helbestan a bi navê 'Mehabad Ber bi Olimpiyada Xwede de' heye. Evana yên niha hatin bîra min.

Nivîsk û wêjeya Sûriye'yê, bi taybetî çîrok û roman di bin bandora wêjeya fransî de pêş dikeve. Sedemê vê yekê, ne ji ber ku fransî weke ziman û çandekî taybet hatiye neqandin, lê ji ber ku Fransa ji destpêka sedsala bîstemîn ve herêmê di bin desthilatiya xwe de digirt. Dibe ku ji ber vê çendê be ku nivîskarên sûriyeyî ji wêjeya Sowyet, îngîlîz û almanan mirov dikare bêje qet jê bi tesîr nebûne. Nivîskarên bi navên Alexandre Dumas, Andre Gide, Marcel Proust, Duhamel û Maupassant bandor li ser wêjeya Sûriye'yê kirin. Piştî şerê duyemîn ê cîhanê, di wêjeya Sûriye'yê de mijara tenê, xiyalşkestinî ye. Û bi vê yekê ve girêdayî 'rev', nezanîna bi kû ve here, melisiye heta awayê wêjeyê. Gava ku rewşa wêjeya ereban wiha bû, ji bo kurdan jî ev kat û dem hîn zêdetir şewat bû. Selîm Berekat di demeke wiha ya şewat de tê dinê. Bi qasî min ji vegotinan fam kiriye, zarokatiya wî û xortaniya wî, di navbêra rev û nezanîna bi kû ve here diçe û tê. Gava em rûpelên pirtûkê bi zimanê xwe şil dikin û diqûlpînin, tâma di hişê me de dimîne tale; êş û azar cîh û warê revê û nezanîna bi kû ve çûyînê ye. Û li vir nivîskar tenêtiya xwe tenê bi zarokatiya xwe ve girê dide. Wexta em li pirtûkên Berekat dinêrin, materyal tenê zarokatî ye; zarokatî gûhek e û hertim hertiştî li vir tomar dike.

Di pirtûka Selîm Berekat a bi navê Pûf li Sûrê ke ku weke romanekê li tirkî hatiye wergerandin lê li gorî min cûreyekî bîranînê ye, her çend mezin bûbe jî dîsa jî çavên zarokekî tê de heye. Buhûşta zarokatiyê wê ti carî xelas nebe. Di vegotinê de mijara bingehîn desthilatiya olî ye û em ji vir zexta neteweyî hîs dikin. Ji lehengên vegotinê Mîro, weke Mesîh lê tê nêrtin. Mesîh, bi hêma û nîgaşa rizgarker me pêşwazî dike û em ji bin vegotinê bi tenêtiya mirov dihisin û ev tenêtî di atmosfereke wiha liba dibe ku gişî dide ber xwe. Em fam dikin ku bendewarê Mesîh, ji bo evdaliyê jî raziye êdî. Her çend Mîro, bêje ku (li Sûriye'yê) wê tirs desthilat bibe, xelk vê yekê qebûl nake. Mesîh wê were û wê mirovan rizgar bike. Kesê ku bêje wê xelaskerek û rizgarkerek çênebe, jixwe ji evdaliyê re razî ye. Gava rewş wiha be, kes bi tevî civaka di nav de dijî, vedigûheze bê watetiyeke mezin û tûne dibe. Romana bi navê Pûf li Sûrê ke ji aliyekî ve behsa girêdana bi qada olî ve dike û ji aliyê din ve jî hin beşan ji jiyana kurdên li Sûriye'yê radixe ber çavan. Di romanê de ku li Qamîşlo û Amûdê derbas dibe, mirov tax û kolanên kurd lê dijîn, her wiha çanda ku bi xwe re didin jiyandin jî dikare bixwîne. Hin caran di kolanê de pevçûn derdikeve, hin caran zimanê erotîk digîje hedê dawî. Herî dawî nîgaşên mirîşk-dîk ên ji cefen ango fabl'an herikiye romanê, di Pûf li Sûrê ke de cîh digire. Sûriye, ji aliyekî ve kurdan di xewre dibe, bi gotina nivîskar "dipişpişîne", ji aliyê din ve jî serê sibê dîk wan zû ji xew radike.

Berhema dûyemîn a Berekat ya bi navê Kuliyên HesinÎ di ser xeteke heman rengî re pêş dikeve. Rojên zarokatiya Berekat dîsa li ser vegotinê bi bandore. Li dijî her cûre dijwarî û zordestiyê, zarokatî stargeha tenê ya mirova ye. Li vir nivîskar, mîna ku dibêje divê kurd qet mezin nebin. Di zarokatiyê de carinan dijwarî heye lê belê vegotin di cîhê herî bê rehm de jî bi dilovaniyê ve tê girêdan.

Ez bawer dikim ku Berekat her çend bi erebî nivîsiye jî, tesîr li ser nivîskarên din ên kurd ên ji Sûriye'yê kiriye. Gava em li pirtûkên nivîskarên kurd ên ji Sûriye'yê dinêrin, qonaxa herî berhemdar, piştî weşandina pirtûkên Bereakat'e. Îro roj her çend berhemên gelek bi hêz derneketibin jî, di her çîrok û romana hatiye nivîsandin de, mirov dikare dewsa tiliyên Berekat bibîne.

# Tenduristiya zarokê ronahiya malbatê ye!




*Psîkolog Hülya Tarman.*

**Essen (Rûdaw) –** “Di bingeha xwe de destavêtina cinsî xirab bikaranîna hêza fîzîkî ye. Le belê xisar a psîkolojîk ku çe dibe, ji ya fîzîkî zedetir e. Zarok ti caran di derbarê destavêtina cinsî de derewan nake, divê jê were bawerî kirin.” Psîkologa klînik û femînîst Hülya Tarman di derbarê şîdeta li ser jînê û zarokan, destavêtina cinsî û rola malbatê lêdikole û ji xwendevanên Rûdaw’ê re pirsgirêk û rêyên çareseriyê şîrove kirin.

***Zordariya di nav malbatê de çi ye û sedemên civakî çi ne?***

Zordarî tevgereke ku mirov fêr dibin û çavkaniya herî giring malbat e. Şaşiyên di nav malbat û civakê de, nezîkbûna çewt a ji namûsê re, bê zanebûn tawanbarî, hejar bûn, li hemberî jiyanê bê hêvî bûn, pirsgirêkên aborî û civakî dibin sedemên zordariyê.

***Bandora zordariya di nav malbatê de li ser zarokan çi encam dide?***

Eger di malekê de zordarî hebe, zarok jî fêrî tundiyê dibin. Zarok ji zordariya di nav malbatê rasterast bîrîndar dibin. Zarokên ku di nav zordariyê de mezin dibin, gelek pirsgerekan jiyan dike:
- Zarokên berî dibistanê; Di peşketinê de lawaz in, di xewnan de kabîs dibinin.
- Zarokên ku diçin dibistanê; xemgînî, tirs, di têkiliyên hevaltî de zorî.
- Bi zaroke gewre re; di pêşeroje de pêwendî û jiyana wan di bin metirsiyê de ye.

***Bi kurtasi psikolojiya zarokên ku di bin zordariyê de mezin dibin çawa ye?***

- Xemgînî û tirs
- Êşa hûr, madê xelîn, serêş û bin xwe şilkirin
- Di peşketina ziman de paşveçûyîn, li hemberî dora xwe bêpêwend
- Nivîn de zorî û di xewn de kabîs
- Himbez û dirêj giryan
- Di xwarinê de pirsgirêk
- Herdem bi hêrsbûn
- Bêbawerî û pirsgirêk di hezkirinê de
- Di dibistanê de serneketin, di têkiliyên hevaltiyê de pirsgirêk
- Meyla wan li ser xwekujiyê çê dibe

Di wê rewşê de alîkariya mezinan ji bo zarokê divê çawa be?
- Parastina baş ku mirov zordariya di nav malbatê de rawestîne, eger ew ne gengaz be, di demeke kurt de zarokê ji zordariyê dûr xistin.
- Giringe ku hemû endamên malbatê alîkariya psîkolojî bibinin û di demeke kurt de birînên wan werin nasîn û dermankirin.
- Endamê malbatê karibin li ser zordariya xwe bipeyivin.
- Zaroka ku zordarî dîtiye, daxwaz dike ku biaxifê. Divê mirov lê guhdar bike, mecal bide ku raman û hîsên xwe bîne ziman.
- Guhdana zarokê di pêşerojê de alîkariya herî mezin e, bo ku karibe bawariyê bistine.
- Ger daxwaz nebe ji bo axaftinê, hewl bidin ku zarok raman û hîsên xwe bi rêya nîgariyê diyar bike.

***Tê gotin ku destavêtina di nav malbatê bi bêdengî tê pêşwazî kirin. Destavêtina zarokê hûn dikarin şîrove bikin?***

Di bingeha xwe de destavêtina cinsî xirab bikaranîna hêza fîzîkî ye. Bi du awayan tê jiyankirin: Şîdeta fizîkî, li ser beden û şîdeta psîkolojî.

Le belê xisar a psîkolojîk ku çe dibe, ji ya fîzîkî zedetir e. Ti car divê neyê ji bîr kirin ku destavêtina cinsî ji aliyê xizmekî zarokê ve çe dibê. Destavêtin di nav malbatê de bi bêdengî tê pêşwazî kirin, ji ber ku malbat bi xirabî mohr nebê. Zarok di nav şaşîtî û tirsê de ye, zarokên biçûk xwe tawanbar dibine, li hemberî jiyane bê hêvî dibe. Gelek caran dengê xwe nakê, bê baweri dibe, dibêjin ’ti kes bawerî bi me nayînê, wê me berpirsiyar bibînin, bêdengî baştir e.’ Ji ber wê yekê bi salan dibe qurban. Ji ber wan sedeman, zarok karin xisarê bidin xwe. Xwekujî weke rêyek derdikeve holê. Lêkolîn û ceribandin diyar dikin ku zarok ti carî li derbarê destavêtina cinsî de derewan nake, divê jê were bawer kirin. Malbat divê hişyar bin. Di demeke kurt de ji mirovên profesyonel alîkariyê bêxwazin. Tenduristiya zarokê ronahiya malbatê ye.




*Ji çepê: Şemza Özar, Aysun Sayın, Yücel Karakoyun, Fatma Karakoç.* *(Wêne: Diha)*

# Li Amed’ê Konferansa Îstîhdama Jinan

**Amed (Rûdaw) -** Navenda Agahiyan a Odeya Pîşesazî û Bazirganiya Amed’ê (DTSO), di çarçoveya şahiyên Sala Têkoşîna bi Vederkirina Civakî û Xizantiya 2010’an de, di 6’ê Sibat’ê “Konferansa Îstîhdama Jinê û Pêvajoya Endamtiya YE“ li dar xist. Di konferansê de Serokê GUNSIAD’ê Şah İsmail Bedirhanoğlu, Serokê Lijneya Rêveberiya DTSO’yê Galip Ensarioğlu, Şaredara Bağlar’ê Yüksel Mutlu, Wekîlê Şaredariya Bajarê Mezin a Amed’ê Metin Kılavuz, Sekreterê Giştî yê Ajansa Pêşkeftinê yê Amed’ê Dr. Ilhan Karakoyun û nûnerên saziyên jinan ên li bajar beşdar bûn. Serokê DTSO’yê Galip Ensarioglu diyar kir ku li Tirkiye’yê asta îstîhdama jinan li gorî berê zêdetir bûye, lê negihiştiye nîviya armanca YE’yê. Ensarioglu destnîşan kir ku ji sed jinên di rewşa karkirinê de, 92 li derveyî îstîhdamê tên hiştin.

Konferans bi mijara “Yekîtiya Ewrûpa’yê û Îstîhdama Jinan” dewam kir û endama KEÎG’ê Şemsa Özar, ji Midûriyeta Giştî ya Statuya Jinan (KSGM) Fatma Karakoç, ji Midûriyeta Giştî ya Saziya Kar a Tirkiye’yê (ÎŞKUR) Yücel Karakoyun û rojnamevan Serpil Yilmaz nêrînên xwe anîn ziman. Şemsa Özar got ku li Tirkiye’yê jin ji zilaman zêdetir beşdarî berhemdariya civakî dibin, lê li gorî vê beşdarbûnê sûdê ji berhemdariyê wernagirin. Özar bi lêv kir ku li Ewrûpa’yê zilam rojê 2 saetan bi paqijiya malê derbas dikin, lê ev yek li Tirkiye’yê ji 45 deqîqeyan kêmtir e. Özar destnîşan kir ku li Tirkiye’yê ji sedî 65’ê jinan li derveyî qeydên fermî dixebitin.

Endama KSGM’ê Fatma Karakoç jî got ku sedema beşgehîn a beşdariya îstîhdamê ya jinan ji ber têkçûna çandiniyê, koçberiya ji gundan ber bi bajaran ve, kêmbûna perwerdehiyê, asta kêm a pişeyî û îstîhdama derveyî qeydan e û ev rewş wiha dike ku aliyekî mezin ê nifûsa jinan betal e.”

## Nazik Nêreweyî:

# Hikûmet alîkariya hunermendên jîn nake



**Hewlêr -** Wê rojê nehişt em wêneyê wê bigrin, ji ber biryar daye tenê bi cil û bergên kurdî di konser û medyayê de derkeve, lewma çend wêneyên xwe yên amade dan destê me; wêneyên ku bo reklama berhema xwe ya dawî girtibûn. Nazik Selîm Nêreweyî di sala 1989’an li devera Amêdiyê ji dayîk bûye û li wir dijî.

Nazik behsa pirsgirêkên ku li pêşiya keçên Amêdiyê yên ku dixwazin stranan bibêjin, bûne asteng dike û dibêje: “Li Behdînan dijwar e ku keçeke kurd cesaret bike û stranan bêje, ji ber malbatên wan asteng in. Herçiqasî gelek keç hene ku dengê wan xweş e û kêfa wan ji strangotinê re tê jî, lê belê dêbavên van keçan nahêlin, lewma ez zêde serbilind im ku malbata min piştîvaniya min kir û ez vêna heta he tayê jibîr nakim.”

**Nazik evîndar e**

Nazik piştî albûma xwe ya yekem bi navê “Li Min Bibore“ ku di sala 2007’an de belav bû, niha bi amadekirina berhema xwe ya nû ya bi navê “Her Evîn“ mijul e. Nazik dibêje ku di vê albûma nû de zaravê soranî jî ji bîr nekiriye û stranek bi soranî jî, bi navê Umrî Min Pêşkeş Be To, gotiye .

Xewna Nazik a herî mezin, xewna pirraniya keçên Amêdiyê bûye: “Xewna min ev bû ku rojek bê ez wek keçekê roleke baş di civakê de bilîzim. Lewma sipas ji Xweda re îro li devera Behdînan û li hemû deverên din li her çar parçeyên Kurdistan’ê naskirî me û pirr kêfxweş im ku guhdariyê bikim.”

Nazik ku herdem lêvbiken e, hê mêr nekiriye û dibêje: “Ez tenê aşiqa welatê xwe û hunera kurdî me lê wekî din hê nebûma aşiq. Mêrkirin ne di destê me de ye, qismet e û di destê Xweda de ye.”

**Rexne li hikûmetê**

Nazika bêhtir guh dide dengê hunermendên klasîk: “Lê bi taybetî zêde kêfa min ji dengê hunermendê nemir Tehsîn Teha, Erdewan û Eyaz Zaxoyî û Eyşa Şan re tê.”

Nazik rexneyan li Hikûmeta Herêma Kurdistan’ê jî digre ku hevkariya hunermendan nekiriye: “stranbêjên keç pirr kêm in, ez wek stranbêjeke keç hê hikûmetê ti hevkarî li gel min nekiriye, lewma hest dikim ku hunermend ji aliyê hikûmetê ve hatine paşguhxistin.”

**Prof. Celîlê Celîl:**

# Xema min Kerkûk e

Zanistê dîrokê Prof. Celîlê Celîl ku yek ji navdarên kurdê Sovyeta kevn e, niha li paytexta Awusturya, Viyana’yê dijî û li wê derê Enstîtuya Kurdolojiyê ava kiriye. Celîl di derbarê xebat û xemên xwe de pirsên Rûdaw’ê bersivandin.

KAWE EMÎN

***Niha hiç rêxistineke siyasî û çandî ya kurdî li Rûsya heye ku bikare berjewendiyên kurdan biparêze?***

Na, niha tenê radyoyek heye ku di rojê de nîv katjimêrê bi kurdî weşanê dike, weşana wê jî di çarçova demografiyeke bertesk de ye.

***Gelo derfetên kurdan tune ye ku xwe organize bikin û çanda xwe biparêzin?***

Ew kadroyên xwedî şiyan ku berê karûbarê çandî dimeşandin, pirraniya wan koça dawî kirin û hinek ji wan jî derbiderî welatên din bûn û yên ku mane jî, kes piştgiriya wan nake.

***Ger em hinek behsa dîrokê bikin, peywendiya kurdên Sovyetê û tevgera azadixwaziya kurd li parçeyên Kurdistan’ê çawa bû?***

Kurdistan ji me re xewa şev û rojan bû, çi bûyerek li Kurdistan’ê biqewimiya, em hem pêre dijiyan û hem jî pêre dimirin, niha car car em serî li Kurdistan’ê dixin û em dilxweş in ku perçeyek welatê me azad e.

***Hikûmeya Herêma Kurdistan’ê alîkariya we nake?***

Min bi xwe hîn alîkarî wernegirtiye, wekî din ez nizanim ku hevkariya kesên din tê kirin an na, dibe alîkariya wan jî bê kirin. Ger hevkariyek jî hebe, pêwîst e bi awayekî bernamedarêtî û bi eşkere be, nabe ew alîkarî bi awayekî veşartî be.

***Mamoste, we bi xwe gelek lêkolînên dîrokî kirine. Niha ku destê kurdan digihe wan hemû belge û dokumentan, di vê derbarê de projeyeke we ya nû heye?***

Niha min li Viyena Enstîtuya Kurdolojiyê ava kiriye, me hem avahî heye û hem pirtûkxane, em mijûlî lêkolînan in û hin kes jî li cem me mijûlî nivîsîna teza doktorayê ne. Min bixwe jî hinek kar û projeyên nû hene, lê niha ez ji te re nabêjim ku ezê çi bikim. Dema hat belavkirin, hûn dikarin bişopînin.

***Hûn wek dîrokzaneki rewşa niha ya kurdan çawa dinirxînin?***

Niha li Başûrê Kurdistan’ê hikûmetek ava bûye, birakujî nemaye, kurd rêz û hurmeta hev digirin, lê ew nayê wê wateyê ku hemû pirsgirêkên kurdan hatine çareserkirin, heta du pirsên giring neyên çareserkirin, dilê min bi xwe rihet nabe. Ew du mesele jî, yekem pirsa Kerkûk’ê ye, duwem jî pirsgirêka wan herêman e ku Saddam ji Kurdistan’ê veqetandibûn. Mixabin kurdan çareserkirina wan herêman dereng xist, gelek tişt hebûn ku diviya bihatana kirin, lê mixabin nehat kirin û hatin piştguhxistin.

***Divê kurd çawa bi Amerika re tevbigerin, bi liberçavgirtina tecrûbeyên berê em dikarin bêjin Amerika dostê kurda ye?***

Tu pirsekê ji min dikî ku hûn bersiva wê ji min baştir dizanin.

***Lê ez dixwazim hûn wek dîrokzaneki bersiv bidin. Gelo ji bo dahatûya kurd hûn geşbîn yan reşbîn in?***

Jiyana me hemû bi reşbînî derbas bûye, lê ji bo ku em geşbîn bin, divê bingeheke me hebe, di siyasetê de geşbînî tune ye, ger kurd bi plan û bernameyan kar bikin û hev qebûl bikin û kar û xebata hevbeş bimeşînin, bêguman ev dibe sedema wê yekê ku em bi pêşeroja xwe geşbîn bin. Niha bingehek me heye û divê em pêşde bibin heta bikarin geşbîn bin. Hinek birînên me derman bûne, ez bawer im hêvî ron e ku wê Kurdistan serbixwe bibe.

***Bi baweriye we Tirkiye dixwaze ku pirsa kurd çareser bike?***

Di cîhanê de gelek tiştên ecêb çêdibin, kî bawer dikir ku Sovyet hilweşe? Belkî tiştekî wisa ecêb jî çêbibe, gur bibe berx.

***Wek dîrokzaneki hûn bawer dikin ku Tirkiye li wan hewlên ku dide nerîneke durist û ciddî hebe?***

Baş e çima ez ji te pirs nekim, hûn wek rojnamevan wan pirsan zêde dişopînin, hûn çi dibêjin? Ez dîrokzanekî kal im, niha ew karê we ye, divê li ser wê mîrata ku em ji we re bicîh dihêlin kar bikin û baş binirxînin û xwe fêr bikin, wê demê dikarin Kurdistan’ê jî avedan bikin.

# Sêdaredanên Rojhilatê li Parlamena Hollanda

**Amsterdam (Rûdaw) -** Piştî ku çendîn raportên rojnameya me Rûdaw’ê bûn sedema pirsyarên fermî di derbarê kurdên li Bakûrê Kurdistan’ê li Parlamena Hollanda’yê, vê carê jî ji Wezîrê Derve yê Hollanda pirsa sêdaredanên çalakvanên kurd li Rojhilatê Kurdistan’ê hat kirin.

Li ser darvekirina herdu çalakvanên Îranî Mihemed Riza Alî Zemanî û Araş Rahmanîpûr, Partiya Sosyalîst (SP) bi pirsyarên nivîskî daxwaz ji wezîr Verhagen kir ku hinek aliyên meseleya sêdaredanên çalakvanan li Îran’ê ronî bike. Zemanî û Rehmanîpûr bi sedema beşdarîkirina di opozîsyonê de di dema hilbijartinên serokkomarî de hatin darvekirin û li gor agahiyên BBC darvekirina neh hevalên wan jî nêzîk e.

Harry van Bommel ku bi navê partiya SP’yê pirsyar arasteyî Wezareta Derve ya Hollanda’yê kiriye, di beşeke din a daxwaznameya xwe de qala raporteke Rûdaw’ê jî dike û dipirse: “Herwiha gelo rast e ku van mehên borî komek çalakvanên kurdî-îranî hatine darvekirin û komeke ku ji 17 kesan pêk tê li benda darvekirina xwe ye?” Siyasetvanê holandî bi awayekî berdewam xwe di derbarê rojeva kurd de bi rêya raportên beşa holandî ya Rûdaw’ê bi navnîşana www.rudaw.nl agahdar dike.

Di dawiya nameya xwe de Bommel ji wezîr Maxime Verhagen daxwaz dike ku ew zextê li Îran’ê bike û bi rêya balyozê vî welatî yê li Hollanda’yê sêdaredana çalakvanan şermezar bike.

**Karsazê kurd Selah Mûsa:**

# Li Ewrûpa piyasa dönerê di dest kurdan de ye



Selah Mûsa

**Bonn (Rûdaw) -** Karsazê kurd Selah Mûsa ku 20 salan karê gastronomiyê dikir û restoranta wî li Almanya, li navenda bajarê Bonn’ê hebû û yek ji xwaringehên kurdan yên destpêkê bû, dibêje bazara firotina goştê dönerê ketiye destê kurdan.

Döner, yan jî weke ku kurd jêre dibêjin ges, li Ewrûpa reqabeta şîrketên mezin yên weke Mc Donald’s û Burger King dike. Ne tenê li Ewrûpa, belkî li seranserê dinyayê wê reqabetê dest pê kiriye.

Döner li Ewrûpa xwarineke bingehîn e. Fast Food e, yanî “xwarina bi lez“. Xwarina ku bi lez tê amadekirin û pêwîst nake kesên birçî zêde li benda çêkirina wê bimîne, ew ji bo xwarinê berê çêkirî û amade ye.

Ji ber ku jiyana Ewrûpî’yan hema hema her demê di nava lez û bezê de ye û ew nikarin zêde li benda çêkirina xwarinê bimînin, xwarina wan yan di çenteyê wan de ye, yan jî di destê wan de ye. Gelek caran tu wan dibînî, hem dimeşin diçin karê xwe hem jî bi rê ve xwarina xwe dixun.

Eger mirov carekê çenteyê yekî Ewrûpî (çenteyê almanekî weke nimûne) veke, wê têde pirtûk, xwarin û şûşeyeke avê bibîne.

Ji ber van sedeman û gelek sedemên din rêzexwaringehên weke Mc Donald’s û Burger King heta berî derketina dönerê, du Fast Food’ên pirr dixebitîn û bê reqîb bûn.

Di derbarê reqibeta di navbera şîrketeke weke Mc Donald’s û produksyona dönerê de karsazê kurd Selah Mûsa wiha dibêje: “Mc Donald’s ji mezinbûna dönerê hesaban dike. Li Ewrûpa döner ji xwarinên Mc Donalds, weke “Hamburger“ bêhtir tê firotin. Bazara dönerê niha ji Hamburger mezintir bû ye. Ev yeka jî dibe sedema ku hesabê dönerê were kirin...”

Selah Mûsa ku bêtirî 30 salî ye li Almanya’yê dijî û niha bi karê kirîn û firotina avahiyan re mijûl e, diyar dike ku yek ji berpirsyarên Mc Donald’s li Almanya bi wî re ketiye pêwendiyê û nêrîna wî li ser guhertina hinek menûyên Hamburger xwestiye.

Mûsa wiha dibêje: “Mc Donald’s difikire ku li Japon’ê goştê dönerê bixe nava menûyên xwe. Rêze Mc Donald’sên Almanya jî niha li ser vê yekê difikirin û plan dikin yan döner, yan jî menûyeke nêzîkî dönerê bifroşin...”

Selah Mûsa berdewam dike û dibêje, ew bawer dike ku di demeke ne pirr dûr de Mc Donald’s wê gavê bavêje.

Li aliyê din karsazê kurd Selah Mûsa dibêje: “Produksyonên dönerê yên kurdan, heta niha weke



kurd xwe li Ewrûpa nedane nasandin, ew weke tirk têne naskirin...”

Mûsa hêvî dike ku rojekê li cîhanê weke pizza ya îtalî, lahmecûna erebî, dönera tirkî, gyrosa yunanî û felafela erebî-îsraîlî, xwarineke taybet bi kurdan jî hebe.

Li gora îstatîstîkên di dest de, rojane zêdetirî 500 ton döner tê hazirkirin.

Niha ji mezintirîn produksyonên dönerê li Ewrûpa’yê, Birtat, King, Gulşen û Alan xwediyê wan kurd in, ji Bakurê Kurdistan’ê ne.

Rûdaw **Şertên Abonetiyê**

**Ji bo salekî:** *Almanya, Belçîka, Awûstûrya, Fransa, Hollanda:* 60 Euro · *Swîsre*: 120 CHF · *Brîtanya*: 60 GBP *Swêd* (Schweden): 900 SEK · *Danîmarka* (Danemark): 600 DKK · *DYA* (USA): 100 USD *Kanada* : 120 CD · *Tirkiye*: 100 TL

**Ji bo şeş mehan:** *Almanya, Belçîka, Awûstûrya, Fransa, Hollanda*: 30 Euro · *Swîsre*: 60 CHF · *Brîtanya*: 30 GBP · *Swêd*: 450 SEK · *Danîmarka*: 300 DKK *DYA* (USA): 50 USD · *Kanada*: 60 CD · *Tirkiye*: 50 YTL

**Ji bo Almanya:** Rudaw Media GmbH
Bank: Deutsche Bank Köln · Konto Nr: 2450161
BLZ: 37070024

**Ji derveyî Almanya:**
IBAN: DE48370700240245016100
BIC: DEUTDEDBKOE

**Navnîşan:**
Rudaw Media GmbH · Gutenbergstr. 63a
50823 Köln / Almanya
**E-maîl:** info@rudaw.de

### Şêniyên Almanya

# Alman kêmtir, kurd zêdetir dibin!

**Hawlatiyên vê dewletê heya temenê sîh saliyê, mijûlî xwandinê dibin, paşî li pey vedîtina karekî berdewam digerin, ji nûve bîra jinanîn û zewacê dikin û belkî piştî wê hizra dirustkirina zarokan bikin.**



*Kurd û biyaniyên ku li Almanya jiyan dikin , zarokan dirust dikin.*

**Köln (Rûdaw) -** Bi gor amarên Fermangeha Serjimêriya Federal a Almanya, ji sala 1947 -1971'an li vî welatî, hejmara ji dayikbûyan ji ya miriyan bêtir bû. Lê ji wê dîrokê û vir de, hejmara miriyên Almanya ji hejmara jidayikbûyan bêtir e. Ti salekê jî weke sala 2009'an, hejmara zarokbûnê li vî welatî nizim nebûye. Amarên Fermangeha Serjimêriya Federal amaje didin hejmara rûniştvanên Almanya ku li sala 2009 (81,80) milyon bû. Lê li sala 2008'an ew hejmar 82 milyon bû. Ango hejmara rûniştvanên vî welatî kêmbûye. Herweha hatiye aşkerakirin ku ji sala 2003'an ve hejmara hawlatiyên Almanya di kêmiyê de ye. Ji ber ku zarokbûn kêmbûye. Ew serjimêrî wê yekê jî diyardike ku li sala 2008, 683.000 zarok ji dayikbibûn û 844 kes jî mir bûn. Lê li sala 2009'an, tenê 660.000 zarok ji dayikbûne û nêzîkî 840.000 kes jî mirine.

Dibe ku tesîra kirîza aborî li ser kêmbûna hejmara ji dayikbûyînê hebe li vî welatî. Lê bi şêweyekî giştî hawlatiyên vê dewletê heya temenê sîh saliyê, mijûlî xwandinê dibin, paşî li pey vedîtina karekî berdewam digerin, ji nûve bîra jinanîn û zewacê dikin û belkî piştî wê hizra dirustkirina zarokan bikin. Ji aliyekî din ve, rêjeyeke mezin a keç û xortên Almanya baweriyê bi hevdû nakin ku heya dawiyê ew bi hev re bimînin. Lewra ew hizr û hewla dirustkirina zarokan jî nadin. Hin ji wan jî dibêjin; ''Seyekê me heye û ew ji me re bes e, ma zarok ji bo çiye?'' Tevî vê yekê jî dema mirov di nav bazar û bajarên vî welatî de hatinûçûnê dike, mirov pir zarokan dibîne.

**Biyanî zor didin zarokan!**

Lê eger mirov dûvçûneke hûr lê bike, wê diyarbibe ku bêtiriya wan zarokan, yên bêkaran û kesên ku dest ji xwandinê berdane. Herweha kurd û biyaniyên ku li Almanya jiyan dikin jî, zarokan dirust dikin. Ew jî ji ber çend egeran wî karî dikin, ango yan ji ber girêdayîna wan ya bi hinek urfan û heza wan ji zarokên zêde, yan jî ji bo ku xwe ji karkirinê vedizin yan jî bo standina yarmetiyên bêtir. Bo zanîn ew alîkariya sosyalî, wan biyaniyên rojhelatê nagire ku mafê wanê manê tune yan mana wan a demkî heye.

Bi gor sîstema vê dewletê, her kesê ku xwandina xwe qedand yan qunaxa zaroktiyê derbaskir, pêwîste li ser wî/wê karbike. Yan wê bi şêweyekî berdewam ji aliyê fermangeha karî, daxwaz jê were kirin ku karekî ji xwe re bibîne yan jî ew dê karekî ji wî re bibînin û lazim ew kar bike. Mirovê kurd jî, bi taybetî jin û li pêşiya hemûyan jî jinên Başûrê Kurdistan'ê yên li Almanya dijîn gelek bi kêmî kar dikin. Vêca ji bo xwe rizgarkirinê ji serêşiya wê fermangehê, ew zarokan dirust dikin. Îbrahîm Hecî (40 sal), dibêje "Gelek malbatên kurdan cîranên me ne, ew giliyê ji hevjîna min dikin, ji ber ku ew kar dike. Jê re dibêjin dest ji karî berde û li mal rûne zarokan dirust bike. Bi vê rê tu dê malbata xwe jî mezin bikî û pare jî bistînî." Îbrahîm bavê keçeke pazde salî û kurekî deh saliye, ew herweha dibêje "Malbatên me jî wê daxwaziyê ji me dikin, lê ji me re ev dû zarok bes in. Çunkî bi rastî xwedîkirina zarokan ne karekî hêsane û ew alîkariya ku hikumet jî dide, têrî perwerdekirina zarokan nake!."

Hesen ku bavê sê zarokane, axaftinên xwe bo Rûdaw'ê got, "Fermangeha Karî jî ji bo dema dû sala waz li dayika zarokî tîne û daxwaza karkirinê ji wê nak e. Herçend ku beriya niha sê sal bûn, lê ji ber ku niha baxçeyên zarokan di temenê dû salî de zarokan qebûl dikin, lewra salek hatiye kêmkirin. Berê gelek kesan bi sedema pareyê zarokan, li Kurdistan'ê xanî kirrîn û niha jî dema mirov diçe şahiyan, bêtiriya jinên ku zêrên zêde pêvene, gelek zarokên wan jî hene!."

### Piştî karesata Haîtî'yê

# Kurd bexşînê nîqaş dikin

**li dor mijara alîkariyê, heyameke li Almanya û gelek welatên dinyayê behsa komkirina alîkariya qurbaniyên karesata Haitî'yê tê kirin.**





*Alîkariya qurbaniyên karesata Haitî'yê tê kirin.*

SERAL ALÎXAN

**Köln -** Di serdana çend resturant, cihên bazirganî û malên kurdan, Rûdaw'ê danûstana mijara bexşîn û alîkariyê digel wan kir. Di serî de xwediyê resturanta Dunya, Berwar Berwarî (28 sal) diyarkir ku pir caran karmendên rêxistinên alîkariya zarokan û hin caran xizmetkarên mizgeftan yan jî kesên girêdayî rêxistiyên civaka sivîl, serdana wan dikin: "Ji bilî rêxistin û aliyên biyaniyan, hin caran kurd jî tên û ji bo sazkirina şevekê doza alîkariyê dikin. Em jî xwe paşde nakşînin û bi gor karînên xwe, em tiştekî didin wan." Lê Berwarî diyarkir ku li şehyanan û bi taybetî jî dawetên xizmên xwe, ew bêtir bexşîşan dide, "Helbet di şehyanan de, hertim xizm û dostên nêzîk ên zavayên kurd, şebaş û bexşîşan didin stranbêjan. Lewra dema em diçin ser daweteke weha, em jî di dayîna şebaş û bexşîşan de, xemsariyê nakin."

Her li dor mijara alîkariyê, heyameke li Almanya û gelek welatên dinyayê behsa komkirina alîkariya qurbaniyên karesata Haitî'yê tê kirin. Li Almanya jî wek her car, bêtirî hikûmetê, xelkê vî welatî alîkarî dan. Di vê derbarê de Ehmed Zaxoyî (20 sal) xwediyê kafêtiryayekê ye gotî "Îsal kar û qezenc jî kêm û bêserûber e, pênc euro jî ji me re gelek in. Lewra bi rastî em nikarin alîkarî bikin. Bi xwe welatê min wêran e, dapîr û bapîrên min li Kurdistan'ê dijîn û rewşa wan a aborî û tendirustî jî nebaşe. Mafê wan li ser min heye ku ez çavê xwe bidim wan. Ango ji min re alîkariya wan pêwîsttir û baştir e ji ya biyaniyan." Ji aliyekî din ve, Dilawer Mihemed Salih (25 sal) ku çend sale digel jineka alman dijî, lê naxwaze alîkarî bike: "Bi rastî kesî ne gotiye min ku alîkariyê bidim Haitî yan welatekî din. Lê ez ne amade me tiştekî bidim. Çunkî dema li sala 1991'an em ji rejima Saddam reviyan ser sînoran, gelek dewlet û aliyan pişta xwe dan me. Herweha gelek dewletên ku alîkariya me jî kirin, xwarin û vexwarinên xirabe ji me re şandin û bazirganî bi me dikirin."

Lê hin kurd jî hene, berevajî Dilawer bîr dikin û amade ne hevkariya her kesekî bikin ku pêwîstiya wî bi alîkariyê hebe. Ji aliyê xwe ve Serdar Elî (33 sal) weha dibêje: "Şîrketa telefonê ji min re sms şand û têde nivîsandibû ku eger ez yek sms ji wan re bişînim, ewê 5 euroyan ji hesabê min biçe bo Haitî, min jî rasterast sms şand. Mixabin ku di vê serdemê de jî, hin mirov hene bi çavên cuda li mirovan temaşe dikin. Ango dibêjin ev xiristiyan e ma ti peywendiya me bi wî ve heye, bila xiristiyan alîkariya wan bikin. Ev hizreke pir şaş e û divê berî her kesî em kurd hewil bidin xwe ji wê dûrxin. Çunkî me gelek ziyan ji vê cudakariyê ditiye û em dizanin ew çendî xerabe."

Di warê zanistî de jî, gelek kurd hene dixwazin zaniyariyan bidest xwe ve bînin. Lê ji wana kêm kes amadene wî karî li hember diravekî encam bidin. Heya kurdên ku endamên partiyan, rêxistiyên siyasî, kulturî û sivîl jî gelek bi zehmet aboneyên xwe didin. Evîn Ehmed (24 sal) dibêje: "Em miletekî ne xwendevan in, em hîn bûne hemû tiştên me weke diyarî ji me re werin. Ji bo bi destxistina zaniyariyan jî, em kêm caran destê xwe dixin bêrîka xwe da ku rojname, pirtûk yan filmekî kurdî bikirrin ku qet nebe, bibe piştevanî ji nivîskar û berhemhênerên me re."

### Bi 2,5 milyonan euro CD'yeki dikire:

# Almanya bi tewankaran re bazarê dike?

**Almanya dixwaze bi kirîna CD'yekî tijî navê kesên bacxwêr, hemwelatiyên xwe bitirsîne ku pereyên xwe bi dizî li "bihuştên bacê" nerazînîn. Lê kirîna CD'yekî ji kesekî nediyar bi yasaya welatekî demokratîk re guncav e?**

**Köln (Rûdaw) –** Piştî ku Hikûmeta Almanya'yê biryar da ku CD'yekî tijî navê 1500 kesên bacxwêr bi bihayê 2,5 milyon euro bikire, nîqaşên li ser guncavbûna vê biryara hikûmetê bi yasaya Almanya'yê jî gur bûn.

Ev cara duyem e ku Hikûmeta Almanya'yê CD'yekî tijî navê kesên ku bi rêkûpêkî baca xwe li Almanya'yê nadin û pereyên xwe li derveyî Almanya'yê bi dizî radizînin, dikire. Di destpêka sala 2008'an de jî Hikûmeta Almanya'yê CD'yek tijî navê bi sedan kesên tewanbar ku pereyên xwe li "bihuşta bacê" Lichtenstein razandibûn, bi 4,6 milyon kiribû. Vê carê li ser CD'yê behsa mijarê navê 1500 hemwelatiyên alman ku bi dizî pereyên xwe di bankeyên swîsreyî de razandine, tansyona siyasetmedar û dadnasên almanî bilind dike. Di navenda nîqaşan de bankeyên swîsreyî Credit Suisse, UBS û sîgortaya Generali hene.

Wekî di mijara CD'yê di derbarê Lichtenstein de, vê carê jî dadnas dibejin ku nabe Almanya bi awayekî neqanûnî CD'yekî bikire û xwe bi vî awayî bike hevkarê tewankaran. Dadnas bi bîr tînîn ku kesê ku wan CD'yan difroşin, bi xwe tewankar in û bi awayekî neyasayî xwe gihandine wan agahiyên li ser CD'yan tomarkirî. Ger hikûmet wan CD'yan bikire, wê gavê li gor dadnasan hikûmet hem xwe dike hevkarê kesên




tewankar û hem jî ji tewankariyê re dibe piştgir. Wekî din jî dadnas tînin ziman ku delîlên ku bi rêyên neyasayî têne bidestxistin, li pêşberî dadgehan bêwate ne, ji ber ku li gor yasayên Almanya'yê delîlên ku bi rêyên neyasayî hatibin bidestxistin bêwate ne û nikarin li pêşberî dadgehê li hemberî tewanbarekî bêne bikaranîn.

Tevî van rexneyên ji aliyê dadnasan û gelek derdorên din jî Serokwezîra Almanya'yê Angela Merkel daxuyand ku ewê CD'yê behsa mijarê bikirin û tiştekî neyasayî di vî karê wan de nîne. Merkel got ku kesên bacxwêr ne tenê xwe sûcdar dikin, di heman demê de ew neheqiyê li hemberî civakê û hemû hemwelatiyên ku baca xwe bi rêkûpêkî didin, dikin û ji ber vê yekê hêr rêyek ji bo pêşîlêgirtina nedana bacê rêyek bêyî guman e.

Li gor texmînan bi agahiyên li ser CD'yê dawî Hikûmeta Almanya'yê dikare heta 400 milyon euro ji wan kesên bacxwêr bistînê. Bi alîkariya CD'yê di derbarê kontoyên almanan li Lichtenstein'ê, daîreyên bacê yên alman heta niha zêdeyî 200 milyon euro baca nedayî wergirtine û pirraniya dozên di derbarê kesên tewanbar hîn nehatine vekirin jî.

Wezîrê Hundir yê Almanya'yê Wolfgang Schäuble jî bang li kesên ku pereyên xwe bi awayekî neyasayî li Swîsre'yê razandine kir ku serî li rayedarên alman bidin û xwebixwe bidin dadgehê. Kesên wiha divê baca xwarî bidin, lê dikarin li benda cezayekî biçûktir bin. Heta niha çendîn kesan bo xwebixwe dana dadgehê serî li rayedaran dane.

Di vê navberê de CD'yekî nû tevî navê 2 hezar kesên tewanbar bo kirînê ji bo daîreyên bacê yên alman re hat pêşniyazkirin. Berdevkê Wezareta Darayî ya eyaleta Baden-Württemberg got ku agahiyên li ser CD di berbarê mişteriyên çendîn banke û sîgorteyên swîsreyî ne û piştî kontrolkirina agahiyan ji aliyê wan ve, ewê biryarê li ser kirîna CD bidin.




*Înternet zarokan li dibistanan jî serketîtir dike.*

### Brîtanya:

# Înternet û laptop bo her kesî!

**Köln (Rûdaw) -** Hikûmeta Brîtanya'yê dixwaze 300 hezar malbatên xizan bike xwedî laptop û xetên înternetê. Ji ber ku li gor projeyeke mînak şagirtên xwedî kompûter û înternet li dibistanê û dêbav jî di jiyana rojane de serketîtir in.

Li gor lihevhatineke serokên welatên Yekîtiya Ewrûpa'yê, armanc ew e ku heta sala 2013'an hemû welatiyên welatên endam bibin xwedî xetên înternetê, bi bihayekî ku her kes karibe hilgirê. Lê li Brîtanya'yê gihiştina vê armancê hîn dûr dixuyê û tirsa rayedaran ew e ku nakokiya di navbera kesên xwedî înternet û yên ku ne xwedî wê hêza aborî ne ku kompûteran û xetên înternetê fînanse bikin, hîn kûrtir bibe. Ji ber vê yekê Hikûmeta Brîtanya'yê biryar da ku di projeyek mînak de li bajarên Suffolk û Oldham laptopan û xetên înternetê bêpere li kesen xizan belav bike.

Serokwezîrê Brîtanya'yê Gordon Brown ji encama projeya mînak li Suffolk û Oldham hewqasî dilxweş e ku êdî dixwaze projeyê li tevaya welêt belav bike. Brown da zanîn ku ji sedî 97'ê dêbavan bawer dikin ku girêdana bi înternetê zaroyên wan li dibistanan serketîtir kirine û ji sedî 80'yê dêbavan jî dibejin ku ew edî bi xwe jî çalaktir piştgiriya zaroyên xwe di dersên dibistanê de dikin. Brown got ku ji ber vê yekê ewê êdî li 270 hezar malbatan li seranserê Brîtanya'yê laptopan belav bikin û wan bi înternetê ve girê bidin. Bihayê vê projeya hikûmetê 300 milyon sterlînê brîtanî ye.

# Îran'ê rojeva Konferansa NATO'yê tevlîhev kir

**Hatina ji nişkê ve ya Wezîrê Dervê yê Îran'ê Mottakkî rojeva Konferansa NATO'yê tevlîhev kir. Di dema ku Mottakkî hewl dida ku niyeta baş a welatê xwe îspat bike, agahiyên nû di derbarê bernameya nûkleyer a Îran'ê belav bûn.**

REŞAD ÖZKAN

**Munîh –** Di navbera 5 û 7'ê vê mehê 46'emîn Konferansa Ewlekariyê ya NATO'yê li bajarê Almanya Munîh'ê li dar ket. Hêviya siyasetmedaran, wezîran, general û bazirganan ew bû ku di rojeva konferansê de pêşeroja NATO'yê, pirsgirêkên li Rojhilata Navîn û Afxanîstan hebin. Lê hatina ji nişkê ya Wezîrê Dervê yê Îran'ê Menûşerî Mottakkî bo konferansê, rojeva wan tevlîhev kir.

Hatina Mottakkî gelek hêvî bi siyasetmedaran re peyda kiribû, lê hatina wî wekî propagandayek nû ya Îran'ê bû û zû jî hat famkirin. Di nîvê şevê de Mottakkî di paneleke de pirr axifî û mevanên konferansê zor acîz bûn. Mottakkî di axaftina xwe de got: "Em aşitiyê dixwazin. Hedef ne çêkirina bombeyên atomî ye. Me pêşniyar kirin, me got dema hûn ji me bawer nakin, wê demê bila bernameya me ya nukleyerî li welatekî din bê domkirin. Li gor peymana NetewênYekgirtî (NY) ku Îran'ê jî mohr kiriye, mafê me jî yê dewlemendkirina ûranyûmê û bikaranîna wê ya aşityanê heye. Ji bo vê yekê ev neheqiyek pirr mezin e ku hinek dewlet bawer dikin û dibêjin 'Îran dixwaze bombeya atomî ava bike', ew îddia ye."

Di wê navberê de jî hevseroka Partiya Keskan a Almanya Claudia Roth ji Mottakkî pirsek kir: "Li Îran'ê heq û mafên mirovan qet tune ne, çapemenî di bin zordariyê de ye, zor li ser gelên Îran'ê û jinan berdewam e." Mottakkî bersiva Roth da û got: "Lady, li Îran'ê her mîrov li pêş qanûnan wekhevin, zordarî tune û nezikî 4 hezar sazî û rêxistin hene ku ji bo heq û mafên jinan dixebitin."

Dema ku Mottakî ev peyv digotin, rojnameya almanî "Süddeutsche Zeitung" nûçeyek di derbarê Îran'ê de weşand. Li gor rojnamê Îran'ê bi alîkariya pisporên rûsî bernameya xwe ya atomî gelekî pêşde xistiye û dikare bombeyên atomî di navbera 18 heta 36 mehan de amade bike. Li gor agahiyên Ajansa Navneteweyî ya Enerjiya Atomê (IAEA) bi alîkariya roketên Şahab-3'yan, yên ku di dêste Îran'ê de hene, bombeyên atomî yên Îran'ê dikarin bighijin heta Îsraîl'ê jî.




*Îsal jî Konferansa NATO'yê tansyonê dijberê konferansê bilind kir. Gelek komên dijber banga protestokirinê kirin. Xwepêşandana 10 hezar kesan li dijî konferansê ji aliyê 3 hezar polîsan hat dorpêçkirin û gelek çalakvan hatin binçavkirin.*

Wêzîrê Dervê yê Swed'ê Carl Bildt jî li ser podiûmê li kêleka Mottakkî rûniştî bû û got: "Eger bi rastî bernameya we ya nûkleyerê bo elektirîk û pêwistiya enerjiyê be, wê demê pêwiste Îran bo çareseriyê civînekê bi Gruba 6'an a NY re çeke. We demê jî divê Îran bo biryarên Meclîsa Ewlekariyê ya NY re amade be û dest ji dewlemendkirina ûranyûmê jî berdê."

Gelek hikûmetan bawer dikin ku Îran wan dixapîne û hedefa Îran'ê bombeyên atomî ne û hatina Mottakkî ya konferansê jî taktîk e û dixwaze helwesta dijberên bernameya atomî ya Îran'ê perçe bike.

Wêzîrê Dervê yê Almanya Guido Westerwelle jî di axaftina xwe de got: "Îran pirr dipeyive, li şuna gotinan em rastiyan dixwazin bibînin." Westerwelle Îran hişyar kir ku ji bo qezenckirina demê lîstikan nelîze û eger Îran bi Netewên Yekgirtî re hevkariyê neke, ew mecbûrîn li ser berfirehkirina sanksyonan bifikirin.

### Nîjerya li serokê xwe digere:

# Welatekî bê serok bi ku ve diçe?

Mezintirîn welatê Afrîka'yê hem valahiyek desthilatê dijî û hem jî bi nakokiyên mezin ên komên Musulman û Xirîstiyaniyî re rûbirû ye. Serkirdeya siyasî û gendel jî berjewendiyên şexsî esas digre.

**Serwîsa Cîhanê (Rûdaw)** – Ji ber ku serokê Nîjerya'yê Umar Yar'Adua ev çend mehan li derveyî welat e, welatê Afrîka yê xwedî mezintirîn hejmara rûniştvanan ji ber çendîn nakokiyan ber bi şerekî navxweyî diçe. Hêzên tundrew jî dixwazin valahiya desthilatê ji bo xwe bi kar bînîn.

Ji dawiya Mijdar'a sala borî ve qesra serokê Nîjerya'ye vala ye. Piştî ku gotegotên di derbarê mirina wî belav bûn, Yar'Adua mecbûr ma ku bi rêya BBC îspat bike ku ew hîn jî sax e û bi hêvî ye ku di demeke kurt de vegerê welatê xwe. Welatê Yar'Adua yê 58'î ku niha li Erebistana Siûdî ji ber nexweşiya dil tê tedawîkirin, mezintirîn krîza desthilatê ya deh salên borî derbas dike. Di sala 1999'an de dîktatoriya leşkerî a 33 salan bi dawî hatibû û Nîjerya derbasî demokratiyê bûbû. Ji hingî ve li 12 parêzgehên pirranî Musulman li bakurê Nîjerya'yê Şerîat tê bikaranîn. Ji 140 milyon welatiyên Nîjerya'yê nîvê wan Musluman in û nîvê din jî Xirîstiyan û olên xwezayî ne. Musluman li bakurê Nîjerya'yê dijîn û Xirîstiyanî jî pirranî li başûr.




*Nîjerya'yi li serokê xwe digerin:"Umaru, tu li ku yî?"*

Tevî ku kêm kes pê bawer in ku Yar'Adua yê ku demek dirêj nexweş e, rehet bibe û dîsa vegerê ser postê xwe yê serokatiyê, dîsa jî ew xwe ji postê serokatiya Nîjerya'yê venakişînê û rê ji tijîkirina valahiya desthilatê re venake. Û tevî ku bi hezaran welatiyên nîjeryayî – û di vê dawiyê de hinek kesên ji derdora hikûmetê jî – vê rewşa li welêt protesto dikin jî, lê Hikûmeta Nîjerya'yê piştgiriya xwe bo Umar Yar'Adua nîşan dide. Pisporên siyasî du sedemên helwesta Umar Yar'Adua û ya hikûmetê destnîşan dikin: ya yekê parlamenter û derdorên gendel naxwazin hilbijartinên nû bên li dar xistin û heqdest û postên xwe ji dest bidin; wekî din jî serkirdeya siyasî naxwaze serokatiya welêt ji destê kesekî Musulman bikeve destê yekî Xirîstiyan heta ku hilbijartinên nû pêk werin. Eger Yar'Adua yê Musluman xwe ji serokatiyê vekişîne, wê gavê cigirê wî Goodluck Jonathan yê Xirîstiyan dikeve cihê wî û hem Umar Yar'Adua û hem jî hikûmeta Muslumanî vê yekê naxwazin.

Bandora valahiya desthilatê herî zêde di du nokokiyan de xwe nîşan dide: şerrawestandina ku Yar'Adua tevî nerazîbûnên tund bi rêxistina çekdarî ya başûrê Nîjerya'yê "MEND" re mohr kiribû, ji ber gavneavêtin û pêkneanîna sozên hikûmetê ji aliyê vê rêxistina ve hat hilweşandin. Bo cara yekê MEND ragihand ku ewê ji bo beşekî mezintir ji hatiya ji nefta başûrê Nîjerya'yê êdî li derveyî herêmên neftê jî çalakiyan pêk bînin.

Pirsgirêkek din a sereke ku ber bi teqandinê ve diçe, nakokiyên di navbera Musulman û Xirîstiyaniyên li navenda Nîjerya'yê ye. Beriya sê hefteyan di pevçûnên di navbera komên Musulman û Xirîstiyanî zêdetiri 550 kes li bajarê Jos hatin kuştin, piştî ku ciwanên Xirîstiyanî li dijî avakirina mizgefteke Musulmanan derketibûn. Beriya sê salan û di sala 2001'ê de jî pevçûn di navbera komên ji herdu olan pêk hatibûn û bi giştî 1700 kes hatibûn kuştin. Beriya çend rojan rêxistina Al-Qaîda li Maxrêb'ê bi daxuyaniyeke piştgiriya xwe ji bo "bira û xwişkên Nîjerya'yî" derbirî û anî ziman ku ew amade ye "piştgiriya wan a perwerdeyê û çekan bike".

# Piştî karesatê revandin û destdirêjî

Piştî erdheja li Haîtî'yê şîdet û destavêtinên jin û zarokan jî zede dibin. Berpirsyarê van karan tewankarên ji girtîgehan reviyayî û bazirganên mirovan têne dîtin.



*Piştî karesatan yên ku beriya her kesî rastî tundûtûjiyê tên, pirraniya caran jin û keç in.*

**Serwîsa Cîhanê (Rûdaw)** – Çar hefteyan piştî girantirîn erdheja 150 salên borî li Haîtî'yê, jin û keçên ku li kolanan radikevin dibin hedefa tewankaran. Weke ku rêvebirê polîsên Haîtî, Mario Andrésol daxuyand jin û keçên ku di konan de dijîn, dibin hedefa heqaret û destdirêjiyên 7 hezar tawankarên ku ji girtîgehên rûxayî reviyan e: "Pêwistiya me bi pênc salan hebû ku em wan kesan desteser bikin, niha jî ew hemû azad li van deran digerin û ewê ji me re pirsgirêkan dirust bikin." Heta niha hejmarên fermî di derbarê destavêtina jinan de nehatine belav kirin, lê rêxistinên jinan ketine alarmê û berpirsên Netewên Yekgirtî (NY) agahdar kirin.

Beriya karesata li Haîtî'yê derdora 8 hezar polîsan ewlekariya welêt diparastin, piştî erdhejê heta niha tenê nîvê wan polîsan vegeriyane ser karê xwe.

Ji bilî keç û jinan, zarokên sêwî jî dibin qurbanên tewankar û şebekeyên mirovan. Weke ku "Fonda Alîkariya Zarokan a NY'yî – Unicef" daxuyand ji nexweşxaneyeke Haîtî'yê 15 zarok winda bûne û guman ew e ku ew zarok bûne qurbanê bazirganên zarokan. Gelek caran bazirganên mirovan û komên çeteyan piştî karesatan tevlîheviya heyî ji xwe re wek firset dibînin û pirranî zarokan direvînin û wan weke kole difroşin, anjî wan di bazara laşfiroşiyê de bi kar tînin.

Li gor texmînên Komisyona Yekîtiya Ewrûpa'yê hejmara zarokên sêwî anjî yên ku ji ber erdhejê ji dêbavên xwe qut bûne, nêzîkî milyonekê ye. Beriya erdhejê derdora 380 hezar zarokên sêwî li Haîtî'yê hebûn. Di vê navberê de Unicef'ê dest bi tomarkirina zarokên sêwî ku bi tenê li kolanan paytext Port-au-Prince digerin kiriye û wan di malên zarokan de bi cih dikin û xwedî kirin. Rêxistinên alîkariyê texmîn dikin ku ji ber erdhejê derdora 1,8 milyon zarok nikarin bi rêkûpêkî bêne perwerdekirin û 5 heta 8 hezar dibistan jî an hilweşiyane anjî zirar dîtine.

Li gor agahiyên dawî yên Hikûmeta Haîtî'yê di encama erdheja 12'ê Çile 2010'an de heta niha derdora 170 hezar kesî jiyana xwe ji dest daye û tê pêşbînîkirin ku hejmara miriyan 200 hezarî derbas bike. Gelek herêmên welêt kavil bûne, paytexta welêt Port-au-Prince jî di nav de. Li gor cîgirê nûnerê Netewên Yekgirtî bo Haîtî, Paul Farmer, ji sedî 75'ê Port-au-Prince kavil bûye. Weke ku NY ragihand heta niha sozên bêtirî 2 milyar euro alîkarî ji bo jinûveavakirina Haîtî'yê gihiştine wan. Piştî konferansa alîkariyê ku hefteya borî li bajarê Montréal a Kanada'yê hatibû li dar xistin, cîranê Haîtî, Komara Domînîk jî amadekariya konferanseke alîkariya Haîtî'yê di 14'ê Nîsan'ê pêş de dike. Netewên Yekgirtî jî amadekariya konferanseke alîkariyê di meha Adar'ê li New York'ê dikin.

## Cigarekêşî salane 6 milyon kesan dikuje

**Köln (Rûdaw)** – Li gor Saziya Tenduristiyê ya Cîhanê (WHO) hewldanên ku li dijî cigarekêşiyê têne kirin têr nakin û tenê ji sedî 5,4'ê mirovên cîhanê bi rêya yasayan ji bandora neyênî ya cigarekêşiyê têne parastin.



Di raporta 2009'an de WHO tûtinê wek yek ji giringtirîn sedemên mirina pêşwext binav dike û dibeje ku tûtin salane bo mirina 6 milyon kesan li seransere cîhanê berpirsyar e. Tenê li Almanya'yê salane 140 hezar kes ji ber cigarekêşiyê jiyana xwe ji dest didin. WHO hişyar dike ku ger hewldanên kêrhatî li dijî kişandina cîgarê neyên kirin, hejmara miriyên ji ber kişandina cigarê dikare heta sala 2030'î hilkeve salane 8 milyon mirovan.

Herçiqas di sala 2008'an de hejmara welatên ku kişandina cigarê qedexe kirin ji 7'an hilket 17'an jî, lê dîsa jî ji sedî 95'ê mirovantiyê bi rêya yasayan li hemberî dûmana cigaran li restorant û bar an nehatine parastin.

Ji ber encamên kişandina tûtinê salane zirara bi nirxê 350 milyar euro dighije aboriya cîhanê. Herî zêde tûtin li Çîn'ê tê kişandin: bi ji sedî 60'ê mêrên çînî (311 milyon ) cigarekêş in.



# Almanya de Perwerdeyê Kurdkî

Almanya de talebê perwerdeyê kurdkî qebul bi. Şaristanê Kolnî yê Almanya de seba “perwerdeyê kurdkî” muracatê kurdan hetê Mudirîyetê Perwerdeyî ra qebul bi.

Badê ke wezîra perwerdeyî yê eyaleta tewr girde yê Almanya Nordrhein Westfalen (NRW) Barbara Sommer beyanatê xo de va “Yew doman neke tena qiseykerdene de eke nuştene de zî hakimê ziwanê dayka xo bo, îstîqbal de cuya xo ya meslekî û karê xo de do şansê xo zêdeyir bo. Zaf-tewirîya ziwanan dewlemendîyêka kulturî ya û Ewropaya ke gird bena de globalîye nîşan dana.” Kurdan seba perwerdeyê kurdkî muracatê Mudirîyetê Perwerdeyî yê Kolnî kerd û muracatê înan qebul bi.

Qebulbîyayîşê muracatî reyde Wendegeyê Katolîkî yê Mulheimî perwerdeyê kurdkî erê kerd. Naye ser o, rojanê dişemeyan saete mîyanê 12:00 – 16.30 de hetê malimê kurdkî Mehmûd Akbayirî ra do dersa kurdkî (kurmanckî) bîyero dayîş. Wendege de “Perwerdeyê ziwanê kurdkî” do roja 02 sibate 2010 de bi hawayêko resmî dest pêkero. Endamê Yewîyîya Mamostayanê Kurdîstanî Mehmûd Akbayir seba ke domanê înan nê îmkanî ra îstîfade bikerê, kurdê ke Mulheim û dorûverê ey de ronişenê ra taleb keno ke demeyêko kilm de muracatê ey bikerê.

Mehmûd Akbayir venga dadî û babîyanê kurdan dano û wazeno ke ganî ê derheqa ziwanî de hesas bê û vano “Ziwan îstîqbalê miletî yo. No seba însanbîyena ma yo. Gazîya mi na ya ke heme welîyê kurdî hesasî bê û grûbê winasî vêşî bibê. Vanê Koln de 40 hezar kurdî estê. Goreyê na hûmare ra zaf tayo ke tena 75 domanî perwerdeyê kurdkî bivînê. Aîleyê ma yê hesasî estê, ez înan rê sipas kena. Welîyê ma yê ke bi erebeya xo domanan anê wendege û benê zî estê.”

Enstîtuyê Kurdkî ke merkezê aye Almanya de yo zî beyanat da û va, domanê kurdan yê ke Almanya de yê, seba ke perwerdeyê kurdkî bivînê, ma seba her tewirê piştgîrîye rê amade yê. Enstîtuyê Kurdkî ra Fewzî Ozmenî va, “Wazena wa derheqa kitabanê derse de bo û wazena wa derheqa peydakerdişê maliman de bo, eke muracatê ma bikerê, ma bi her hawayê destekdayîşî rê amade yê.”

**Muracat senî beno?**

Erzuhalê ke welîyan arêdayê (tewr tay ganî 15 wendekarî bê) ganî bidê Mudirîyetê Perwerdeyî yê cayê ke tede ciwîyenê. Eke cayo ke murcat bîyo de malimê resmî yê ke perwerdeyê kurdkî bidê peyda nêbê, seba tayînkerdişê maliman ganî tewr tay 60 yan 70 wendekarî estbê. Welîyê kurdî derheqa perwerdeyê kurdkî de şênî bi wasitaya telefonî mamosta Mehmûd Akbayirî reyde bikewê têkilîye.

Tel: 0221-67117977

**Almanya da dersê kurdkî**

Panc eyaletanê Almanya de hetê 25 malimanê ke bi hawayêko resmî tayîn bîyê ra dersa kurdkî seba hezar ra vêşêrî wendekarî dîyena. Cayêko sey Kolnî de ke 40 hezar ra vêşêr kurdî ciwîyenê, tena semtanê sey Chorweiler, Bickendorf, Porz û Mulheimî de 75 domanî dersa kurdkî wanenê.

ROŞAN LEZGÎN

## Kamî Şêrgele Kişto?



Ap Husê Keyê Hesan zemano ke zewicêno, hewteyêk badê vêveyî, keyê vistewran yenê ey û cinîya ey Naca Ase sey vêve û zamayê tezeyî benê zeyî.

Vistirîya Ap Husî Pîra Fate şan de xilike dana dêzike ro. Dêzike dana deneyî ro. Reqreq firaqan ra ana. Zîyafet dana…

Roja bîne keyê vistewranê Ap Husî şinê hêgayê awî de kurêkê payîzî çînenî. Ap Hus zî xo qure keno, şino hetê înan. Camêrdî kurêk çînenî, cinî û kênayî zî înan dima şimêlan danê arê. Xala Eyşa baltuza Ap Husî zî a game kênaya xama ya. A zî mîyanê cinîyan de ya.

Eyşe senî ke şimêlê kurêkî wedarena, çira yew merre bin ra nêremeno. Qîştî kewena Eyşe ser, bi ters qîrena. Milet keno hêwirze, her yew cayê ra vano, “Merre, merre!”

Ap Hus sey zamayê neweyî, wazeno palewanîya xo binawno. Sere dano merreyî ser. Çend rey vaşturîya xo çelpneno. La merre sey virsikî çindik dano, derba Ap Husî veng ra şina. Axir peynî de derbe ginena sereyê merreyî ro. Hêgayê çînayeyî de, mîyanê meydanî de lingê ey benê rep, mireno.

Bineyke badê cû, vistirîya Ap Husî paleyan rê areyî ana. Cinîya Ap Husî zî sey vêvika tezîye ameya zeyî la a zî wazena kar de hetê keyê babîyê xo bikero. Çend parçeyê werdî zî aye girewtê û maya xo reyde şinê mîyanê hêgayî. Versîya gozêre de sofre rast kenê. Camêrdî yenê ke nanê xo biwerî, cinî zî şimêlan danê arê. Tam a vîstike de, hîna ke paleyan dest bi werdî nêkerdo, çira çimê vistirîya Ap Husî nêgineno berateyê merreyî ro. Nişka ra qîrena vana:

- Hero kamî tîya no merreyo pîsik mirdar kerdo?

Veng şino miletî. Xo rê binê zimbêlan ra peşmirîyenê la kes vengê xo nêkeno. Çira na qale nêginena Ap Husî ro. Ey rê giran yeno ke vistirîya ey verê cinîya ey û hende miletî de vato, “merreyo pîsik”. Ap Hus, seke forsê ey bişikîyo, pungurîyeno, şino pêser. Qet destê xo derg nêkeno, koçike nêgêno.

Baltuza ey, na Xala Eyşe o wext zî bineyke şeytanike bena. Leze fehm kena. Nusknena maya xo, bi vengêko nizmek vana:

- Da-dayê merreyî çi yo? Ti nêvînena? Şêrgele yo, şêrgele! Zamayê to kişto…

Hiş yeno bi sereyê vistirî. Xo arqilîyena. Hewna qîrena vana:

- Hero kamî no şêrgele tîya kişto?

Hema newe rengê Ap Husî abeno. Destê xo dano sêneyê xo ro, vano:

- Zamayê to kişto, zamayê to.

# Warkênaya Mi Newşîne

XEZALA ŞARİKÎ

Newşîne warkênaya min a. Înkê çeherserrî ya.

Par rueşun remzunî di birayê mi Wahab Almanya ra umebi. În semed ra meymanê ma zî zaf bî. Yew umêni, yew şîni. Ma meymanu ragirotiş ra heme qeflîyêni. Yew rî çay bîya, yew rî qehwe bîya, yew rî kola bîya. Çê vidertiş çinîyebi. Qeflîyayiş yew het a, des û hewt serrî yo birayê mi hama newe hew (ho) yenu kîye. Hama ma pîya mirdê xu pîyera niewnîyê. Mird qalî nikerdî. Îna dinya ra ma çendi weş bi, çendi biciwa huncî ma pîyera mird nibênî la…

Badî yerê ya meymanî xêlek bî sisti. Hela ku çew çinîyebîni, nîyu zî yew fasal biumêni ci, ma pîye het niştîyeni rue. Huncî yew fasala unayen umêy ci. Bawk û dayka mi meymanu dima mendî ra. Ez û Wahab ma niştî rue. Newşîne zî ew warye di oyuncaxî xu erd de kerdî rue û kewta mîyun ha keykena. Çê ma ra zî niewnîyena. Ez û Wahab ma ewnîyê yewbînu ra, mi va:

- Ma çinê biweri?

Ez bibîya nêweşi zî, nêweşîyê cinîyun. Zerrîya mi zaf şîrîne waştîyeni. Mi va:

- Ez bîya nêweş, ez baklawa wen.

Wahab zî wîya û va:

- Ez zî bîya nêweş, ez zî qehwe şimen.

Newşîne zî keykerdişî xu ra şaş nibî û va:

- Eş bîya niweş kotala bidîyen ci. ( Ez zî bîya niweş çîkolata bidîyen mi.)

Ê ruecîya Newşîne verî berî di keykena. Erzîyena yena zerreyê keyî daykê mi ra vuna, “Dayê, mîzê mi ha yena. Lez bîye, mi rî berî tuwalêtî akir, lamba zî tafin. Ez şin, mîzê xu ken.” Newşîne şina tuwalet, yena. Quelekun xu gena, xeftîyena paykiru, pêser gêrena a vuna, “Hîîîî... dayê mi gî xu, xu vîra kerd.” Û hewna erzîyena şina tuwalet.

Par zimistun ez ruec şîn dersxane şewnîyeni zî wadê xu di ders xebitîyêni. Newşîne zî umêni wadê mi. Pênusê minê rengîyen girewtîyen û deftêr mi neqernêni. Rey rey zî verî eynê (lîlik) mi di reng û reng ojeyê mi bî, girewtîyen û vatîyen, “Nenguîyun mi zî bûye bikiy.” Cueka wadê mi ra zaf hes kerdîyen. Newşîne eke qeleme û kaxit ra bîn mird, dên kîşt û bîn har. Çî rê nivindêrtîyen? Îna ra mi zî ya kerdîyen teber. Dima zî mi berî xu mefte kerdîyen. Newşîne zî kerdîyen rik, nişîn. Verî berî di vindertîyen, req-req ber kueni û vatîyen:

- Xalê Yêbaaa… Bey akiy, ez yen zeye.

Zafê yî bêrî mi meftekerde bi. Yew ehtîyacê mi bibîni ez umên teber. Newşîne vengî berî mi sinasnêni. Ya zî wadê yîn ra erzîyên, umên verî mi. Xura Peyman zî aye dima bi… Peyman warzê min o, birayê Newşîne yu. Newşîne ra qicik o. Peyman hîna şeytun u. Heme çî şunenu pîye. Yew hel pîyesero nivindenu. Kuma rêya go (ke) ez Newşîne teber nikirî, şina destî Peyman gêna û yena. Ez vun, “Erê Newê, wa Peyman nîyeru. Şima wirdî pîya bî, şima hîna zaf bên har. Qe nêbo wa Peyman şîyeru. Ez nişken şima wirdîyun pîya di şîr sere. Newe vuna:

- Peyman gunek o. Wa wu zî itîya vindiyu.

Îna rey ez warîştîyen, mi wirdî pîya kerdîyen teber û ber mefte kerdîyen. Zimistunî a serre tim û tim una bi. Yew ruec huncî ber meftekerde bi. Îmtîhanê mi bibi nizdî. Ez ganê hîna zaf bixebitîyêni. Ez warîşta, mi va ez şîr mutfax ra xu rî cê çîdê wêr bîyarî, buîrî. Mi ber kerd a, ez şîya mutfax. Newşîne vengî berî eşnawit, çûtî erzîyê umê verî mi. Mi gurêy xu qedêna, ez gêra a hêt wadê xu wa. Ya zî kewt mi dima û va:

- Xalê Yêba ez zî yen veyî tu.

Mi va:

- Nîye, ti niverdena ez ders bixebitî. Ti şû wadê şima.

Û ez şîya wadê xu mi ber cena ra. Newe pê berî ra veng da va:

- Ez nişin. Ez yen veyî tu.

Ez geyra a, mi ber kerd a. Mi va:

- Şû, itîya birari di mevindir. Serd u. Biunî ez ha ber cenen ra, ti teyna itîya di munena.

Aye va:

- Ez nişin. Ez itîya vinden. Wa cinawiy bîyeyu, mi bueyu. Key ti niveydena ez bîy vey ti.



*Xezala Şarikî & Newşîne*

## Nivîskarê kurd Fehim Işık:

# Divê dewleta tirk ji nûve bê sazkirin

"Heke dewlet-hikumet rê li ber biratî, aşitî û demokrasiye veke, li dijî polîtîkayên nijadperest derkeve û tedbîran bigre, ango nijadperestiyê mezin neke, herkes xwe bi azadî îfade bike, xeterên şerê navxweyî ji holê radibin, gel nayên hemberî hevûdû; lê berevajî vê polîtîkayê şerê gelan e ku di rewşekî weha de ne tenê tirk û kurd, wê hemî kes zirarên mezin bibînin."

ŞARO IBRAHIM GARIP

***Birêz Işık, tu bi xwe li bajarekî Tirkiye'yê, li Stenbol'ê dijî. Hûn rewşa bajarê tirka zanin. Mixabin, di çend salên dawî de li hin bajarên tirka êriş li ser kurda zêde bûn. Tu, sedemên van êrişan di kuderê de dibînî?***

Di dawiya salên 60'î de kurd carekî din şiyarî nasnama xwe bûn û bi cûreyekî din dest bi siyasetê kirin. Tirkên nijadperest û sazûmanê leşkerî jî li hember hewldanên kurda bêdeng neman û ew jî nakokiya li hemberî kurda, xwestin mezintir bikin. Kurd daxwazî mafê xwe kirin; sazûman jî xwest ku bi her cûreyî pêşî li vê daxwazan

"Divê em bizanin ku ziman û jiyana rojane ji hev nayên veqetandin. Ango li bazarê pêwistiya te bi zimanekî tune be, tu nikarî wî zimanî bikarbînî. Ya duyem jî ziman, bi perwerdeyê pêşve diçe. Lê mixabin kurd, ev 86 sal e ku bi polîtîkayên zilm û zordariyê ji kurdî hatine bêparkirin. Zarokên kurda li dibistanan bi tirkî mezin bûne; ev asîmîlasyonekî mezin e."

bigre; ango siyaseta tunebûnê qaîm bikin. Kurd heta sala 1980'an di nav têkoşîna demokratîk de bûn. Lê tê zanîn ku piştî 12 Îlon'ê 1980'an têkoşîna kurda ji nûve, lê bi rengekî din destpêkir; di sala 1984'an de PKK'ê dest bi şerê çekdarî kir. Ew şer bû sedemên gelek kuştinan. Nêzî 50 hezar însan di vî şerî de jiyana xwe winda kirin. Di vî demî de hema bêje her malbatekî kurd bi kuştine ve, bi girtin û îşkenceyê ve rûberû bû. Di mala tirka de jî gelek xort di leşkeriyê de jiyana xwe winda kirin. Ev mirin û pevçûnên han, nijadperestiyê tirka ji berê zêdetir kir, nijadperestî her ku çû zêde bû. Li hember ewqas nijadperestî û şerên mezin, dîsa jî li Tirkiye tû caran gel nehatibûn hemberî hevûdû. Hinek bûyerên lokal li Çanakkale, Îzmir, Antalya û Aydin'ê çebûbûn, tirkên nîjadperest êrîş biribûn ser kurdan; lê yên şerxwaz bi awayekî giştî biserneketibûn. Îro ev xetera ji berê zêdetir e. Xeter, bi taybetî di politi- kayê dewletê de ye. Wekî tê zanîn tirk, qewmekî welê ne ku piranî bawerî bi rêvebirên xwe tînin; ango tirk girêdayî dewleta xwe ne. Heke dewlet-hikumet rê li ber biratî, aşitî û demokrasiye veke, li dijî polîtîkayên nijadperest derkeve û tedbîran bigre, ango nijadperestiyê mezin neke, herkes xwe bi azadî îfade bike, ev xeterên ku em behs dikin ji holê radibin.

***Li gor we, wan bûyerên çêbûne ji alî dewletê ve tên plan kirin?***

Ji bo em sedemên vê yekê baştir fambikin, divê em dewletê şîrove bikin. Dewleta Tirkîye ne dewletekî xwezayî ye; ango ji dewletên rêzê cûda ye. Li Tirkîye tu car sîvîlîzasyon biserneketiye; yên sîvîl, di rêvebirina dewletê de nebûne hukumran. Dewleta tirk li ser mantalîtekî leşkerî hatiye damezrandin. Ev rewşa dewletê, mixabin heta niha jî berdewam dike. Piştî sala 1980'an, ev dewleta leşkerî carekî din ji nûve hat sazîkirin. Hin dezgeyên dewletî ya li ser parlamentoyê hatin damezrandin. Konseya Ewlekariya Netewî, Dadgeha Makezagonî, dadgehên din yên bilind û gelek saziyên eşkere û nêhînî yên din, hê jî bihêz in û li ser parlemento û hikumetê ne. Hinek vê sazîbûna dewletê wekî "Dewleta Kûr" bi nav dikin, lê bi ya min dewleta tirk bi xwe ev e. Yên vî dewletî bi vî awayî damezrandine, naxwazin hukum ji destê wan derkeve. Ew ji bo berjewendiya xwe kar dikin û naxwazin ev hêza xwe winda bikin. Sedemekî dijminatiya li hember kurda jî ev e. Vana, nijadperestiyê mezin kirin û yên hawîrdorê hemû, wekî dijmin nirxandin. Lê heke demokrasî di ciye xwe de rûne, sazûmana leşkerî hilweşe û dewlet li ser mantalîteyekî sîvîl ji nûve bê sazkirin û siyaset birserkeve, ev saziyen ku me qalkirî nikarin peşî li gelên Tirkiye'yê bigrin.

***Ango li Tirkiye'yê politikayê asimîlasyonê ya fermî niha tune ye? Ku ev rast be, bi ya we otoasimilasyonekî heye an na?***

Rastiyek heye. Divê em wê jî bizanin. Ya yekem ew e ku mirov nikare ziman û jiyana rojane ji hev veqetîne. Ziman û jiyan bi hev re girêdayî ne. Ango li bazarê pêwistiya te bi zimanekî tune be, tu wî zimanî nikarî bikarbînî. Ya duyem jî ziman, bi perwerdeyê pêşve diçe. Kurd, ev 86 sal e ku ji kurdî hatine bêparkirin. Zarokên kurda li dibistanan bi tirkî mezin bûne; ev zextek e û asîmîlasyonekî mezin e. Zarotiya min tê bîra min. Dema ku ez hatim Amedê, tirkî nedizaniyam, lê belê li Amedê, hê di salên 67-68'an de gelek xwendekar, her çiqas bi kurdî jî dizaniyan dîsa jî bi tirkî diaxiviyan. Pêvajoya red, înkar û asîmîlasyonê, bi taybetî li bajaran, kurda ji jiyana kurdewarî qetandibû.

***Qebeheta kurda, bi taybet yên rewşenbîran tune ye?***

Wan salên ku ez behs dikim tu rewşenbîrên kurda nemabûn ku qebehetên wan hebin. Yên hebûn jî bi nêhînî dixebitiyan, nedigîhiştin gel. Piştî têkoşîna siyasî carekî din destpêkir, rewşenbîr û siyasetmedarên kurda xwe carekî din gîhandin gel, tesîra vê hewldanê li ser jiyana rojane ya kurda û her weha li ser zimanê kurdî jî hate dîtin. Apê Mûsa



*Nivîskar û mamostayê kurd Fehim Işık.* *(Wêne: Rûdaw)*

di salên 60'î de Qimil nivîsandibû. Wan deman hin kovarên kurda derdiketin û di wan kovaran de bi kurdî jî hin helbest û çîrok dihatin çapkirin. Piştî sala 1974'an rewş dehî bi pêşve çû. Siyaseta kurda di nav gel de jî bingeha xwe çêkir. Lê ya bi rastî piştî salên 1990'î weşangeriya kurdî zêdetir xurt bû. Guherînên li başûr jî li ser kurdên bakûr bandorekî erênî çêkir. Lê dîsa jî têrî nake. Kurd hê jî xwedîtiya zimanê xwe nakin. Çend sal berê şaredariyekî, bi qasî ku tê bîra min Şaredariya Sûrê li Amedê lêpirsînekî çêkiribû. Encamê vê lêpirsînê de diyar bû ku di nav ciwan û zarokên ku li Amedê dijîn de yên ku bi kurdî diaxivin % 30-35 e; ango % 65-70 yan bi kurdî nizanin, yan jî di jiyana xwe ya rojane de zimanê kurdî bikarnaynin. Ew xeterekî mezin e.

***Em bêne ser perwerdeyê. Hukumet ji alî perwerdeya kurdî çi difikire? Gor ditina te perwerde bi kijan awaye bibe, baştir e? Tenê di dibistana ewilîn de, yan di ya navencî de, yan jî heta zaningehê? Bi gor raya we çareserî çi ye?***

Ji qada dewlet û hukumetê, li ser perwerdeya bi kurdî, ji bilî rayên neyînî heta niha tiştekî fermî nehatiye gotin. Tenê perwerdeya taybet, çend sal berê hate serbestkirin. Ev jî tiştekî ecêb e. Wekî ku mirov ji almanekî re bejê biçe di qursên taybetî de zimanê xwe fêr bibe! Çareserkirina esasî ne ev e; divê her netewekî xwediyê kîjan mafa ne, kurd jî xwediyê ew mafan bin. Hinek hene dibêjin ku kurd nikarin bi zimane xwe perwerdeyê pêkbînin. Ev galgalekî vala ye. Dev jê berdin! Bila ew derdê kurda be! Çi ji we re, dikarin an nikarin! Tu li ber perwerdeya kurdî rê veke, ji perwerdeya kurdî re asteng nebe! Heke rê li ber vebe, ez bawer dikim ku wê di demekî kin de kurd bikaribin ji dibîstana seretayî heta zaningehê bi zimanên xwe perwerdeyê çêbikin.

***Di vir de em carek din hatin siyasetê. Hûn bi kijan çavî li gavên ku AKP davejin, dinêrin; yan ji vana disa lîstik in? Tu ji pêvajoyê şikdarî?***

Şika min a li vir ewqas girîng nîne. Yê şikdar bila Erdoğan be. Ji xwe me heta niha digot komkûjiya Şêx Saîd, Dêrsim, Zîlan... Me bi sala behsa zilm û zexta li ser kurda kir. Lê gava serokwezîre Tirkiye'yê bêje "Komkûjiya Dêrsim'ê", ez ji vê şikdar nabim; lê serokwezîr Erdoğan dikare şikdar bibe. Sedem û raya wan çi dibin bila bibin, heke di van pêngavên ku ji alî Erdoğan û AKP'ê tên avêtin de Erdoğan bi ser nekeve, ev siyaseta nû dibe dawiya wan jî. Di serneketin de bila Erdoğan ji xwe re ciyê revê bigere. Rastiyekî din jî heye: Êdî pirsgireka kurd li Tirkiye'yê hatiye wê merhaleyê ku divê bi çi awayî dibe bila bibe jê re çareseriyekî bê dîtin. Heke kurd di ser axa xwe de azad nejîn, çiqas gel li der û dorên wan hene ew jî nikarin bi azadî bijîn. Azadiya gelan girêdayî hev in. Êdî ev hatiye dîtin. Vêgav li Tirkiye'yê herkes di gengeşiyekî de ye. Kurd û tirk, leşker, nijadperest, çep û rastên tirka û kurda, Îslamî, komunîst, ango hemû di gengeşiyê de ne. Qet şik nîne ku ev gengeşî bi serê xwe jî pêngavekî ye. Îro kem zêde, telewîzyonekî kurdî ya dewletê heye. Ez bi xwe bi erenî li TRT-6'ê dinêrim. Berê gelek telewîzyonên tirka hebûn û kurda bi tirkî dixapandin; heke kurd malê xapandinê bin bila telewîzyonekî jî bi kurdî wan bixapine. Bêgûman, di van gavan de tesîra têkoşîna kurda gelek in. Wekî mîsal, beriya TRT-6'ê jî telewîzyonên kurda hebûn. Roj TV, Kurdistan TV, Kurdsat, Kurd 1 û yên din hebûn. Niha TRT-6 jî heye û kurd vana temaşe dikin. Divê em vê jî bizanibin ku ev pengav ji alî hukumetê ve bi awayekî kêyfî nehat avêtin. Di vê pêngavê de jî û di gengeşiyên niha de jî tesîra têkoşîna kurda heye.

***Çand, wêje û huner, bi rasti li gel me kurdan tiştên ji siyasetê dûr nîne. Ji ber ku di van rojan de siyaset dîsa mij û duman e, dixwazim pirsên xwe dîsa binim ser siyasetê. Bi ya we girtina DTP'ê wê zêdetir zirarê bide kê; kurda yan ji dewletê?***

Girtina DTP'ê qet baş nebû. Kurd gelek partî vekirin û gelek partiyên wan ji alî dewletê ve jî hatin girtin. Li vê derê tiştek diyar e ku qedexekirin zextekî li kurdan jî dixê, lê têkoşîna kurdan jî sar nabe. Bi raya min girtina DTP'ê ne tenê ji bo kurda, her wisa ji bo tirkan û AKP'ê jî tiştekî xirab e. Tiştekî din jî heye, dixwazim wê jî bêjim: Qet şik nîne ku pirsgirêka kurd bê kurd çareser nabe, gere kurd jî di pêvajoya çareserkirinê de cîhê xwe bigrin. Mixabin, di vî warî de DTP, piranî jî ji ber kemasiyên xwe, hebûn û rola xwe baş nelîst. DTP dikaribû bi der û dorên din yên kurda re, bi siyasetmedar û rewşenbîrên kurda re li hember dewletê-hukumetê bibana muxatap.


Memati (Wêne: Safîn Hamîd)

**Memati:**

# Me bi şaşîtî behsa vê derê kiriye

Hemû senaryo hewl didin nameyekê bigihînin,tiştê rast û yên xelet jî di senaryoyand e hene. Li gor min divê bîner ewqasî hişyar be ku tiştên rast û ên çewt ji hev cuda bike.

**Hewlêr -** Navê wî yê rastî Gürkan Uygun e, lê ne bi tenê li Tirkiye'yê lê jiber dûblajkirina rêzefîlma Dola Guran (Kurtlar Vadisi) bo zimanê Erebî, hemû Rojhilata Navîn wî wek "Memati Paşa" nas dike. Memati di rêzefîlma ya Dola Guran de alîkarê Polat Alemdar e û rehmê li ti kesî nake û navê wî tê wateya ew kesê ku mirinê dibexşe. Ev rêzefîlma ku ji sala 2002'an ve li Tirkiye'yê destpê kir û heta niha hê berdewam e di sala 2005'an de bûye fîlmekî sînemayê bi navê ''Kurtlar Vadisi-Kuzey Irak / Dola Guran-Bakûrê İraq'' e. Di film de ku Memati jî rolekê dilîze, dîmenekî ne rast liser Başûrê Kurdistan'ê û bi taybetî jî liser kurdan û Hewlêr'ê tê pêşkêşkirin. Memati hefta bori ji bo vekirina şîranîfiroşê Güllüoğlu hatibû Hewlêr'ê û pirsên Rûdaw'ê bersivand.

***Hun hest nakin cudahî di navbera wî cihê ku we fîlmê xwe lê kişand û Hewlêr'ê de heye?***

Hest dikim cudahiyeke ewqas balkêş di navbera vir (Hewlêr'ê) û cihê ku em di fîlmê Dola Guran de behsê dikin de wek erdnîgarî tune, zêde dişibin hevdu. Bi rastî Rojhilata Navîn hemû dişibe hevudû. Me fîlmê xwe li bajarê Gaziantep'ê kişandiye. Keş û hewa û xelkên herdû deveran wekhev in, ewqasî Hewlêr û Entab dişibin hev ku bi baweriya xelkê me fîlmê xwe ne li Entab lê li Hewlêr'ê kişandiye.

***Ligel rola we di fîlmê Dola Guran de, li Hewlêr'ê xelkê da ku wêneyekî bi we re bigrin, didan pêşiya hev, ev li nik we ne ecêb e?***

Me zanibû xelk ji me hez dike, lê ne bi vê ecêbê! Dema li vir me dibînin, tên ba me û hinek ji hiş dikevin. Ev zêde xweş e ku li Hewlêr'ê evqas fanatîkên me hene. Min pêşbînî nedikir ku ewqasî kêfa xelkê ji me re bê. Havînê em bi nêt in fîlmekî din bi navê Dola Guran li Filistîn'ê bikişînin û bi baweriya me wê jimara cemawerên me zêdetir bibe.

***Dramayên tirkî zêde tên hezkirin niha, û dibe ku li derveyê Tirkiye'yê bêhtir ji hundirê Tirkiye'yê tên temaşekirin, nehêniya vê yekê çiye?***

Bi baweriya min jiber Tirkiye'yê deriyê vebuna navçeyê liser Ewrûpa ye, em bêhtir ji xelkên din hatine nav navçeyê. Em hemû xelkên navçeyekê ne, pir tiştên me dişbin hev. Kultûr, pêkhate û baweriyên me wek hev in, reng û rûçikên me jî wek hev in. Li gor min ev faktorên bihêz in ên belavbûna dramayên tirkî li navçeyê. Fîlmên tirkî ji kultûrê xelkên navçê ne dûr in, ne wek berhemên Ewrûpî ne lê beşek ji navçeyê ne.

***Fîlmê Dola Guran-Bakûrê İraq'ê li vir jimareke zêde ya xelkê aciz kir û li hinek deveran firotina wî jî hat rawestandin, bi baweriya we, hun ne şaş bûn di nasandina Herêma Kurdistan'ê bi vî awayî?***

Nizanim ger film li vir hatibe qedexekirin. Me behsa rewşa İraq'ê kiriye, diyar e me bi xeletî behsa vir kiriye. Bi rastî, ez bi tenê aktor im. Senyaryoyê dixwînim û rola xwe dilîzim. Min senaryo ne nivîsandiye.

***Hewlêr a di film de û Hewlêr a ku hun niha dibînin, wekhev in?***

Beşekî zêde yê fîlm di nav kolan û taxên gelêrî de rû dide, lê niha dema li Hewlêr a rasteqîn im, cudahiyeke zêde di navbera Hewlêr a me û Hewlêr a vir de, dibînim. Hest dikim piştî çend salan Hewlêr zêde bi lezgînî bipêş dikeve û geş dibe. Niha li Hotela Sheraton im, min berê ne dîtibû.

***Di film de kurd tên sivkirin û rexne li wan tên girtin, hun çi dibêjin?***

Na, rexne li kurdan nehatine girtin. Hemû kes li vir bi aştî û biratî dijî û li gor min em jî dikarin bi hev re bi aştî û biratî bijîn. Di film û drama de, kesên ku senaryo dinivîsin, rêçika film diyar dikin û ez wek aktor bi tenê bi rola xwe radibim. Lê bi rastî û li gor senaryoyê ne wek kesayetiya xwe, lê wek karaktorê Memati kêfa min ji kurdan re nayê. Kêmasiyên film hene û wek ku dijî kurdan be, tê xwiyakirin. Ez di ber senyaro de ne berpirsiyar im. Bi tenê aktor im û rolan dilîzim. Sînema wisa ye, dibe ku carina behsa hinek tiştan tê kirin lê ne wek rastiyê bin.

***Lê herdem armanc û peyama senaryoyan heye?***

Rast e hemû senaryo hewl didin nameyekê bigihînin, tiştê rast û yên xelet jî di senaryoyand e hene. Li gor min divê bîner ewqasî hişyar be ku tiştên rast û ên çewt ji hev cuda bike. Wek aktorekî ne karê min e bêm û ji bîneran re bêjim ev rast û ew derew e. Xelk bi xwe dizanin û biryarê liser rastbûn yan çewtiya karekî didin.






# Kurd jî bi rêya înternetê dizewicin!

**Silêmanî (Rûdaw) -** Gulana îsal, Namo ji firokexaneya Silêmaniyê difire bo London'ê da ku li gel wî xortê kurd ku di nivîsîngeheke hevsergîriyê de hevdu dîtibûn, jiyaneke nû destpê bike. Namo ya 30 salî kêfxweş e ku karîbû bi xwesteka xwe xortekî wek hevserê xwe, hilbijêre. Namo ne yekem kes e ku bi vê rêyê derbasî nav jiyana hevsergîriyê dibe li Kurdistan'ê. Rojane gelek xort û keç seredana malpera Aşyan (ku malpereke kurdî ye û taybet e bi hevsergîriyê) dikin yan diçin nivîsîngeha Peyman bo hevsergîriyê li Silêmaniyê da ku formên hevsergîriyê dagirin.

Nivîsîngeha Peyman ku di 01.03.2009'an de hatiye damezrandin heta niha 34 kur û keç bi rêya wê jiyana hevsergîriyê pêk anîne. Wek rêveberê nivîsîngehê dibêje niha ew liser hev gihandina 300 kur û keçên din, kar dikin. Rêveberê Nivîsîngeha Peyman Fayiq Hemesûr wiha dibêje: "Kesên ku tên ba me û forman werdgirin, mamosteyên zanîngehê û endezyar û hilgirên bawernameyên master û parêzer in." Ehmed yasaya karkirina nivîsîngehê li gor şerîeta Îslam'ê û kultûrê civaka kurdî guncav dibîne û dibêje: "Kesên tên ba me formekê dadigrin û bersiva 20 pirsiyaran didin, ger bersivên kur û keçekê ji hev nêzîk bin, em wan bi hev didin naskirin û daxwaz ji wan dikin bihev re biaxivin û nas bikin çiqasî ji hev nêzîk in. Em nahêlin kur û keç bi hev re herin derve bo gerînê, jiber ev têbîniya komîsyona Fitûyê bûye û ne dûr e jî ku encamên xirab jê derkevin."

Her 300 formên ku niha liber destê nivîsîngehê ne, 120 ji wan ên keçan û 180'ên kuran e. Nivîsîngeh liser her formekê 15 hezar dînaran werdigre û di qonaxa hevdîtinê de jî 15 hezar dînarên din werdgire. Lê Hemesûr dide zanîn ku nivîsîngeha wan bo jinebî û destkurt û hejaran pereyên formê wernagire. Herwiha kesê bi jin nikare formê bidest bixe.

Piştî ku Rêveberê Nivîsîngeha Peyman vê pêşwaziya germ a gencan derbarê projeya xwe de dibîne, biryarê dide şaxên nivîsîngeha xwe li bajarên Kerkûk, Hewlêr, Kelar, Qeladizê, Ranya û Xaneqîn'ê jî veke: "Heta niha 25 kur û keçên kurd yên danîştvanên Ewrûpa jî hatine ba me û dixwazin jiyana hevseriyê dirust bikin."

Roja 10.01.2009'an, cara yekem malpereke elektronîk a kurdî bi navê Aşyan bo hevseriyê li Kurdistan'ê hat vekirin û armancên wê heman armancên nivîsîngeha Peyman in. Rêveberê Projeyê Aşyan bo Hevsergîriyê Hîmdad Elî dibêje ji ''destpêka karê wan ve rojane gelek genc bi herdû regezan ve peywendiyan li gel wan dikin û dixwazin bibin endam di projeya me de."

Hîmdad Elî dibêje stafa projeyê wan ji 10 kesên çalakvan û hilgirên bawernameyên warê civaknasî û yasayê pêk tê, û tecrubeyên wan derbarê malperên hevawa li Almanya û welatên Ewrûpa û welatên ereban hene.